

Dr. İsmail Beşikçi:

**Divê Kurd çekên xwe ji dest bernedin**

▶ 7



12 ◀



Derhêner Şîrîn Cîhanî:

**Jinên Kurd dûrî aktoriyê dimînin**

▶ 4


# Rûdaw

Hejmar: 6
11. Tebax 2009
www.rudaw.net

ÇAPA EWRÛPA





Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Nr. 6 | 11. August 2009 | Dienstag

# Aramı Dikranagerd gerta

## Aram diçe Amedê




**Köln (Rûdaw)** - Stranbêj, hunermendê idol û dostê gelê Kurd, Aram Tîgran koça dawîn kir. Malbata û hezkiriyên wî biryar dan ku cenazeyê Aram Tîgran li Amedê definbikin.

Dilê Tîgran roja 6'ê tebaxê li mala wî ya bajarê Atînayê cara dawîn lêdabû û mejiyê wî fonksiyonên xwe winda kiribû. Malbata wî û Kurdên Atînayê di heman rojê de ew rakiribûn nexweşxana Van Gelismusê. Aram Tîgranê ku bi sewt û awaza xwe di dilê gelê Kurd de cîhekî bêhempa girtibû, 75 salî bû. Wî 55 sal kilam û stranên ermenî û kurdî gotibû.

Aram Tîgran ji bo pîrozbahiya Newrozê îsal cara yekem çûbû Amedê û li wir ji dilê wî rawestibû. Hunermendê navdar gotibû ku xeyala wî ya hatina Amedê bi cih hatiye û niha daxwaza wî ya herî mezin ew e ku li Hewlêrê konserekî bide.

Aram di jiyana xwe de çûna Amedê wek xeyalekî didît û li ser Amedê kilamekî çêkiribû. Aram Tîgran her bi ser bilindî pêşiyê xwe ji Pasûr, Farqîn, Licê ango ji Amedê dida nasîn.

Aram Tîgran ligel hevjîna xwe Sirvart ji mêjve li paytexta Yûnanîstanê Atînayê dijiya. Beşeke malbata wî li Belçîkayê ye. Yek ji xeyalên Aram ew bû ku neviyeke/a wî çêbibe.

▶ 11

# Almanya li Hewlêrê navenda bazirganiyê vedike



*Beşdarên projeya "İraq Horizons 2015" (Wêne Nicolas Knebel)*

**Sîrwan H. Berko**

**Berlîn (Rûdaw) –** Piştî ruxana rejima Saddam Husên, ji bo İraq bala Almanya bikşîne, diviyabû pênc sal derbas bibin. Piştî serdana Wezîrê Derve yê Almanyayê Frank-Walter Steinmeier ji bo İraq û Kurdistanê, Almanya dawî li bêdengiya xwe ya li İraqê anî û bû yekem welatê Yekîtiya Ewrûpayê ku li Hewlêrê konsulxana giştî vekir.

Ji Navenda Pîşesazî û Bazirganiya Alman (DIHK) Dr. Axel Nitschke sedema dereng gav avêtina şirketên Almanî li İraqê bi hişmendiya Almanî ve girêdide: "Alman di karê xwe de gelekî deqîq in. Ew heta ji sedî sed piştrast nebin gavekî navêjin." ▶ 8

# 'Rojeva Kurd ji aliyê Amerîka ve hat germkirin'



*Doç. Haluk Gerger*



*Prof. Dr. Baskın Oran*



*Prof. Ahmet Altan*

**Enqere (Rûdaw) –** Piştî ku li Tirkiyeyê nîqaşên di derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de careke din ket rojevê, guftûgo roj bi roj berfireh dibin û pêşketinên nû rûdidin. Olana hevdîtina Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdoğan û Hevserokê DTP'ê Ahmet Türk jî didome. Ji roja ku koma DTP'ê ket Parlamentoya Tirkiyeyê, Serokwezîr Erdoğan bi mebûsên Kurd re neaxifî, silav neda û guhdarî wan nekir. Erdoğan heta demên dawîn digot; "ger DTP ji PKK'ê re nebêje terorîst, ez bi wan re rûnanîm." Serokwezîr roja 5'ê tebaxê gaveke nû avêt û bi DTP'ê re rûnişt. Beriya wê hevdîtinê jî çend wezîrên hikûmetê bahsa hewldanên çareseriyê kirin û nexşerêyan amadekirin.

Herwiha aliyê Kurd dilxwaziya xwe ya tevlîbûna vê pêvajoyê anî ziman. Li aliyekî ku dewlet û hikûmet di pirsgirêka Kurd de nerm dibin, li aliyê din opozîsyona meclîsê yên wek CHP û MHP, gotin û daxuyaniyên tund belavdikin.

Aliyên nîqaşan di wê baweriyê de ne ku Amerîka di vê pêvajoyê de aktîf e û dixwaze pirsgirêk çareser bibe. ▶ 8

# Li Kurdistanê 134 kes li ber sêdarê ne

**Soran Behaedîn**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Li gor agahiyên wezareta mafê mirovan li Kurdistanê 134 kes li ber sêdarê ne. Li gel vê rewşê jî îsal cezayên darvekirinê nehatine pêkanîn. Cezayê darvekirinê ku li Iraq û Kurdistanê hîn jî tê pêkanîn, dibe mijara nîqaşan jî. Hinek alî cezayê sêdarkirinê wek xalekî girîng ji bo aşîtiya navxweyî dibinîm, hinek alî ji rakirina vî cezayî wek gavekî girîng berbi civakeke hevdem dinirxînin.



Wezîrê Dadê Farûq Cemîl bo Rûdawê ragihand ku biryara darvekirinê li Kurdistanê tê pêkanîn û got ku piştî dadgeh biryara darvekirinê digire, biryar ji bo dadgeha bilind tê şandin. Eger biryar li wîr jî bê pesendkirin, biryara dawîn ji bo Serokatiya Herêma Kurdistanê tê şandin û eger li wir jî bê erêkirin, wê demê biryar tê pêkanîn.

Cîgirê Serokê KCK'ê Bozan Tekin:

# Em jî dixwazin wek Pêşmergeyên Başûr, hêza me ya çekdar hebe



*Cîgirê Serokê KCK'ê Bozan Tekin (Wêne: Rûdaw)*

**Qendîl (Rûdaw)** - Cîgirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Bozan Tekin herçiqas naveroka nexşerêya Abdullah Öcalan ku wê di 15'ê tebaxa 2009'an de bê ragehandin eşkere nekir jî, got 'PKK destûra sala 1920'an ya Tirkiyeyê wek bingeheke bo otonomiyê liber çav digre."

Di Kongreya dawîn ya KCK'ê de, ku hefteya borî hat lidarxistin, Tekin wek cîgirê Karayılan hat hilbijartin. Bozan Tekin di hevpeyvîneke taybet ya li gel Rûdawê de helwêsta PKK'ê ya beramber encamên hilbijartinên dawîn yên Başûrê Kurdistanê jî eşkere dike: ▶ 8

# Li Berçelanê şeva aştiya jinan

**Colemêrg (Rûdaw)** – Hewildana Jinan ji bo Aştiyê li Zozanên Berçelana Colemêrgê çalakiyeke rûniştinê lidarxist. Komek jin ji Stenbolê birêketin û berê xwe dan Colemergê. Jinên ku ji Izmir, Mêrsîn û Amedê birêketin di 8'ê tebaxê de li Wanê civiyan. 40 jin li Berçelana Colemêrgê şevê derbas kirin. Di heman demê de li Stenbolê ji komeke ji bo beşdarî çalakiyê bibin li ber Taksîmê hatin cemhev. Di nav jinan de endamên DTP'ê Sebahat Tuncer, Gülten Kışanak, Pervin Buldan, Fatma Kurtulan û Cîgira Serokê Partiya Keskan Bilge Çontepe, hunermend İlkay Akkaya, Gülçin Tunuhan, rojnamevan İnci Hekimoğlu, Prof. Dr. Şebnem Kurufincan, ji Hewldana Aştiyê Aysel Doğan, Av. Meral Danış Beştaş cihgirtibû.



# Li ser xaliya sor ya Cannesê derhênerekî Kurd: Şehram Elîdî




**Deştî Sebah**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Ji por û rîh û simbêlên wî yên dirêj dixuye ku Mam Baldar posteçiyekî cuda ye. Ew gelek sal li nav gundên Başûrê Kurdistanê de geriyaye û dengê xelkê tomar kiriye. Rojekê peşmergeyekî daxwaz jê dike ku dengê zaroka wî tomar bike û jê re bîne. Mam Baldar diçe gund. Gundî jê re dibêjin ku zarokên wê navçê û jina dûcanî ya fermande jî li gel, ji gund hatine derxistin û bo cîhekî dûr hatine sirgûnkirin. Mam Baldar li pey şopa wan diçe.

Ev kurteçîroka yekem filmê dirêj yê derhênerê Kurd yê Rojhilatê Kurdistanê Şehram Elîdî ye. Navê film ''Serte Legel Ba / Pistepist Ligel Ba'' ye. Filmê Şehram di pêşbirka rexnegiran ya 62. ya Festîvala Filman ya Cannesê de di sala 2009an de çar xelatan bidestxistibû.

Di destpêkê de navê fîlmê Şehram Elîdî ''Dengê Enfal'' buye. Lê film nav guheriye û buye ''Pistepist Legel Ba.'' Elîdî di hevpeyvînekê bo Rûdawê dibêje: "Heq bû tişhtekî bikim bibe belgeyek li ser belayên di dîrokê de hatine serê gelê Kurd. Balkêş bû rexnegir û sînemekaran li Cannesê nizanîbûn Kurd hatine jenosaîd kirin."

Şehram Elîdî di sala 1971an de li Bajarê Sine yê Rojhelatê Kurdistanê ji dayik bûye. Bo xwendina zanîngehê, di 22 saliya xwe de berê xwe dide Paytext Tahranê û beşê şêwekarî ya kolêja hunerên ciwan dixîne. Paşê di heman kolêjê de mastera sînemayê de dixwîne û jiyana xwe li Tehranê didomîne.

Piştî xwendina gelek jêder û guhdarîkirina hinek şahidên karesata Enfalê û amadekirina 40 senaryoyan di nva 5 salan de, Elîdî senaryoyekê hildibijêre.

Ji bilî vî fîlmî, 11 fîlmên Elîdî yên kirt û dokumenterî hene. Herwiha, li gel hinek derhênerên navdar jî kar kiriye û berhemên wî yên sînemê heta niha li gelek salonên cîhanî û kanalên asmanî tên pêşkêşkirin.

Elîdî balê dikişîne ser tirsa neserkeftina filmê xwe: "Fîlmên trajedîk niha sernakevin. Xelk êdî aciz bûne ji dîtina wêneyên mirin, kuştin û tûndûtûjiyê. Ev pirsgirêk bû lê min çareser kir. Ger tu dixwaze jenosaîd, gelqirî û kuştina mileteki nîşan bidî, divê ne bi gulle û mirinê bi jiyanê nîşan bidî. Ev jî jixwe pir zehmet e. Bê guman, me trajediyên pir mezin derbas kirine. Lê Kurdan bersiva wan trajêdiyan ne bi xemgîniyê daye."




Şehram Elîdî tevî ekîba filma xwe li çolistanekî goreke komelî yê ji bermahiyên Saddam dîtine: "Xewnên wan zarokên binaxkirî yên li bin piyên me û bi wê axa germ a çolistanê hatine nivîsandin, dihat hizra min."

Meşa ser xaliya sor a Cannesê xewna hemû sînemakarên cîhanê ye. Piştî ku xewna Elîdî bû rastî û li gel jina xwe, bi cilên Kurdî li pêşiya 5 hezar wênegir û flaşê kamerayên medyayê çuye ser dikê. Şehram li dika Cannesê bi Kurdî axifiye: "Daxwaza min ya gel hevsera min bicîh hat: Cilê Kurdî û hem zimanê Kurdî jî."

Elîdî dibêje ku beşdariya Festîvala Cannesê bo derhênerekî Kurd cîhê serbilindiyê ye. Li gel wê jî xemginiya xwe jî tine ziman: "Di gel wê xweşiyê bi çenteyekî dagirtî bi xelatan vegeriyam Kurdistanê. Lê kes nehat pêşwaziya min. Min hest bi tenêtiyê kir."

## Diyarbakırspor:

# Kesk û sor bê zer!

**Mehmet Sebatlı**

Hebû tunebû, 41 sal berê li Amedê du tîmên futbolê yên amator hebûn. Dicle Gençlikspor û Yıldızspor. Formaya Dicle Gençliksporê sor bû, ya Yıldızsporê kesk bû. Herdu tîm gihan hev, bûn yek: Bûn Diyarbakırspor. Rengê wê jî kesk û sor. Li jor, bircên Amedê û di nava bircan de minareya Mizgefta Mezin; li jêr sembola zebeşê Amedê...

Serokê yekem, herwiha serokê Şaredara Amedê Nejat Cemiloğlu bû.

Diyarbakırspor û bajarê Amedê bihev re ne gelek girêdayi ne. Ameda ku buye sembol û navenda Kurdan li aliyekî, Diyarbakırspora ku gelek caran bi alîkariya xizmên dewletê li ser lingan maye, li aliyekî din.

Me biêşîne an neêşîne: Kurd ne xwediyê Diyarbakırsporê ne.

Di dinyayê de gelek tîm hene ku bûne sembola gel û bajarên xwe. Barselona û Katalan; Atletik Bilbao û gelê Bask; Tîma Liverpool û bajarê Liverpoolê. Her wiha Manchester United, AS Roma, Inter Mailand, Bayern München, Dynamo Moskau...

Ev tîm bi tevî alîgir, nasnameya gel û bajarê xwe ve yek in. Li hev bandor dikin. Gelo Amed û Diyarbakırspor; Kurd û Diyarbakırspor wiha ne? Di tîmê de ji Amedê tu lîstikvan tuneye. Ji 24 lîstikvanan tenê 3 Kurd hene.

Alîgir, lîstikvan û rêvebiriya ku hertim tê guhertin, gelek hurmetê didin Gaffar Okkanê ku Midurê Polisan bû û di êrişeke "kiryar ne diyar" de di sala 2000'an hatibû kuştin. Her wiha dijminê Kurd, Yaşar Büyükanıt xwediyê nav û hurmetê ye.

Lê li derve, mînak di listikên ku li bajarên Tirk tên lidarxistin, temaşevan û alîgirên Tirk li dijî Diyarbakırsporê her dirûşmeyên, "PKK derkeve der!", "Bimre PKK!" diqîrin.

Em wiha nebînin jî, ev tîm Kurdan temsîl dike.

Gelek Kurd di wê baweriyê de ne ku bi alîkariya dewletê ev tîm biserdikeve. Gelo dewleta ku naxwaze pirsgirêka Kurd çareser bike, çima dixwaze ev tîm tevlî superlîgê bibe? Em gotina Francoyê faşist bînin bîra xwe: Min İspanyayê bi 30 sal bi 3 F'an birêvebir: Fado, Fiesta, Fûtbol. (Ol, cejn û fûtbol).

Du rewşên cûda... Gelo suc û kêmasiya Kurdan jî di vir de tune ye?

Siyaseta Kurd li ser civakê, di alî jiyana rojane de ne xwediyê bandoreke kûr e. Gelek caran xwe nêzîkî Diyarbakırsporê kiriye, lê belê tiştek bidestnexistiye. Ev jî, bixwe pirsgirêkeke girîng e. Saziyên Kurd tenê siyasetê dikin, karmend xwe nadin ber karên sporê.

Niha Diyarbakırspor di bin deynan de difetise. Rêvebir, serok û antrenor hertim tên guhertin. Diyarbakırspor li benda xwediyekî ye. Dikare bibe alternatîfê fûtbola Stenbolê. Ger Kurd alîgirî bikin, dikare bibe tîma xwedî alîgirên herî zêde.

Di dinyayê tenê 3 tîm hene ku di 2 salan de ji lîgên jêr derketine lîga bilind. Li Almanyayê Hoffenheim 1899 mînaka dawî ye. Diyarbakırspor di sezona 1975-76'an de ji lîga 3. derbasî lîga 2. bû. Nerawestiya, sala din derbasî superlîgê bû. Heta sala 1979'an 3 sal bê navber di superlîgê de ma. Piştre... Hertim daket jêr û derket jor.

Ji Kurdistanê tîma ku cara yekem tevlî superlîga Tirkiyê bûye, ew e.

Tevî gelek deynan, guhertina birêvebirinan û bêxwedîtiyê, Diyarbakırspor sezona borî bi serkeftin qedand û derbasê superlîgê bû. Lîstikvanên nû transfer kir, antrenorê nû hat ser kar, bi teknîk û moral amadekariya xwe kir. Sezona 2009/2010 roja şemiyê destpêkir û li hemberê Ankaragücü 2:2 ma. Rakîbên nû dijwar in, dewlemend û xurt in.

Ji bajarê Amedê re, ku navenda siyaseta gelê Kurd e, wek çand û hunerê spor jî divê. Gelo çima lîstikvanên bi Kurdî diaxifin tunebin? Çima li ser formayê bi kurdî navên wan tunebin? Çima hestên ku em ji mûzik, govend, film û berxwedaniya şervanan digrin, ji fûtbolê jî negrin?

Tîmekî weke bircên Amedê berxwedar, weke gelê wî politik û xwedî semboleke watedar ku karibe gelê Kurd bi cihanê bide nasandin... Em hemû dikarin bi rengekî alîkarî bikin. Mînak: Di maçan de roleke mezin dikeve ser milên alîgiran. Temaşekirin û piştgirî.

Rengê sor heye, kesk heye; lê zer kêm e. Zer, di zimanê hunerê de rengê bawerî û dilsoziyê ye. Divê Kurd alikariya saziyên xwe bikin. Hingê rengê formayê wan wê bibin kesk û sor û ser. Ango Diyarbakırspor wê bibe Yaneya Amedê ya Kurdan.



# Li Dubaî mezintirîn navenda çandê ya cîhanê

Li Dubaî bi projeyeke 27 mîlyar dolarî mezintirîn navenda çandê ya cîhanê tê avakirin. Di navenda çanda ku wê li ser girava Saadiyatê bê avakirin de wê mûze, galeriyên hunerê, salonên konseran, 30 otel, du seheyên golfê û oteleke lûks bi 7 stêrkan bê çêkirin. Hîn ji niha ve gelek mûze û galeriyên hunerê yên dinyayê ji bo ku di vê navenda çandê de ji xwe cih bigirin ketine nava keftûlefteke mezin. Her wiha di navenda çandê de wê oteleke binê avê, bi 4 mîlyar dolarî parkeke mezin, cihê şemitandina ser berfê û gelek beşên din ên çand, huner û sporê cih bigirin. Girava ku wê navenda çandê li ser bê çêkirin 500 metre nêzîkî Dubaî ye. Tê texmînkirin ku ev navenda çandî heta sala 2018'an bê avakirin.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net · **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de **Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81 **Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

# Navê balyozên Kurd yên Iraqê eşkere bûn



**Firyad Mihemed**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Navê 13 dîplomatên Kurd ku wê li cîhanê temsîla Iraqê bikin, diyar bûn. Ji 60 balyozên nû yên Iraqê 13 Kurd in. Endamê Parlamentoya Iraqê li ser lîsta Hevpeymanî ya Kurdistanî Dr. Buxarî Evdilla ji Rûdawê re bahsa tayînkirina balyozên Iraqê yên nû kir:

"Li gor yasaya lihevkirinê di navbera frakisyonên siyasî de bo wergirtina posta balyoziya Iraqê 60 kes hatine diyarkirin. Her pêkhateke siyasî jimarek balyozên xwe pêşkêşî Parlamentoya Iraqê kiriye. Piştî komîteya peywendiyên derve ya parlamentoyê hevdîtin bi wan re kir û di hemû waran de ew ravekirine, navên wan şandiye Serokatiya Parlamentoya Iraqê. Ji ber posta balyoztiyê taybet e, divê ji aliyê parlamentoyê ve bê pejirandin. Ger di dema panzdeh rojan de parlamento pesend nekir, ew berbijêr ji postên xwe tên bidûrxistin."

Kesên posta balyoztiyê werdigrin divê beşdarî dewreyeke sê mehî ya dîplomatîk li Bexdayê bibin. Dewre bi serpiriştiya Wezareta Derve tê birêvebirin û wek "dewreya xizmetguzariya derve" tê naskirin û erka wê amadekirina balyozên diyarkirî ye. Dr. Buxarî destnîşan kir, ku çi kesê dewrê derbas neke, nikare dest bi karê balyoziyê bike.

Ji tevahiya şêst balyozên Iraqê ku wê li seranserê cîhanê bên wezîfedarkirin, 13 Kurd in û bi hevbeşî di navber PDK'ê û YNK'ê hatine destnîşankirin. Dr. Buxarî navê 13 berbijarên Kurd bo posta balyoztiyê taybet ji bo Rûdawê eşkere kirin: "Balyozê Iraqê ku ji aliyê PDK'ê ve hatine destnîşankirin ev in: Şewket Bamernî, Seywan Barzanî (Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Fransa), Nafim Nêrweyî, Dr. Pêrût, Rizgar Nûrî Şawês, Husên Sincarî. Berbijarên YNK'e jî ev in: Bekir Fetah, Şoriş Xalîd, Elbêrt Îsa, Ehmed Berwarî (Nûnerê YNK'e li Almanya), Hazim Yûsivî (Nûnerê YNK'e li Misrê), Teyib Mihemed Teyib (Çavdêrê Karûbarê Iraqê li Gurcistanê)."

Dr. Buxarî Evdilla yê endamê Komîteya Peywendiyên Derve ya Parlamentoya Iraqê domand: "Berbijarên Kurd bo posta balyoztiyê li gor berbijarên hêz û pêkhatên Iraqî, kadroyên çalak û xwedî îmkanin di vî karî de û dikarin dîplomasiya Iraqê li welatên cîhanê bipêşbixin."

Li aliyê din yek ji pirsgirêkên di dema çend salên borî de di navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Bexda de heye, vekirina nûneratiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê di nav balyozxaneyên Iraqê li welatên cîhanê ye. Destûra Iraqê mafê vêya dide herêman, lê hîn ev maf nehatiye cîbicîkirin. Dr. Buxarî di derbara vê meseleyê de van agahiyan dide: "Destûrê Iraqê maf dide herêman ku nûneratiyên xwe di warê bazirganî û kultûrî de di nav balyozxaneyên Iraqê de vekin. Lewma divê Encûmena Wezîran û Wezareta Derve sîstemekê deynin, ji bo ku herêm bikarin ofîsên kultûrî û bazirganî di nav balyozxaneyên Iraqê de vekin. Lê peywendiya meseleya dîplomasî bi Wezareta Derve re ye, ne bi herêman re."

# Konsolxana Amerîka agirê Kerkûkê gurtir dike




**Ako Mihemed Şiwanî**

**Kerkûk (Rûdaw)** - Konsolxana Amerîka di van rojan de nivîsek ku têde çendin pêşniyar ji bo çareserkirina pirsa Kerkûkê hatine rêzkirin, pêşkeşî Encûmena Parêzgeha Kerkûkê kir. Ew nivîs dilê Tirkmen û Erebên Kerkûkê xweş kir, lê Kurd pêşniyarên nivîsê red dikin.

Di beşekî nivîsê de wiha hatiye gotin: "Divê em vegerin serjimêra sala 1957'an û ew kesên ku navên wan, an jî yên dê û bavên wan di wê salê de nehatibin tomarkirin, wekî Kerkûkî neyên hesibandin." Di beşekî din yê nivîsê de hatiye gotin ku mafê xelkên bajarokên Kefrî, Kelar û Çemçemalê – ku ji Parêzgeha Kerkûkê hatine veqetandin – jî tune ku beşdarê di hilbijartinên li ser çarenûsa bajarê Kerkûkê de bikin.

Endamê Encûmena Parêzgeha Kerkûkê Ehmed Eskerî ew nivîs wek proje qebûl nekir û got ku ew tenê daxwazek e, ku ji Encûmena Parêzgeha Kerkûkê re hatiye rêkirin û navê tu kesî li ser nîne û wiha diyar kir: "Ev daxwaz ji bilî dilxweşkirina Ereb û Turkmenan, ne tiştek e. Em wê red dikin, ji ber ku bi bicîhanîna vê pêşniyarê hejmara Kurdan kêmtir dibe."

Beşekî ji Ereb û Turkmenên Kerkûkê piştgiriya van herdû pêşniyaran dikin. Serokê Partiya Niştîmanî ya Turkmen û Endamê Encûmena Parêzgeha Kerkûkê Hesen Toran destnîşan kir ku ev proje ji bo şêniyên Kerkûkê pir girîng e û dikare pirsgirêka hilbijartinên Encûmena Parêzgeha Kerkûkê çareser bike: "Ereb û Turkmen vê projeyê baş dibînin û piştgiriya wê dikin. Ji bo ku rêjeya Kurdan di hilbijartinan de zêde bikin, niha piraniya Kurdan xwe wekî Kerkûkî didin nasîn."

Li gor Kurdan ev projeyên ku Ereb û Turkmen ji bo çareserkirina pirsgirêka Kerkûkê pêşniyaz dikin ne rewa ne û ji dêlva ku pirsgirêkê çareser bikin, wê dijwartir û aloztir bikin. Yek ji pêşniyazan ku dibê sedema nîqaşan sîstema kota ye, ku li gor wê sîstema divê rêjeya kursiyên Kurd, Ereb û Turkmen ji sedî 32 û ya Kildanî û Aşûriyan jî ji sedî 4 bê. Di derbarê wan pêşniyazên ku tên kirin de Endamê Encûmena Parêzgeha Kerkûkê yê Lîsteya Birayetî Azad Cebarî nêrîna Kurdan wiha anî ziman: "Ev daxwaza Ereb û Turkmenan ne rewa ye. Ji ber ku sîstema kota tu qîmetekê ji demokrasiyê re nahêle. Eger ji bo Kerkûkê rewa be, divê li bajarên Mûsil û Diyale jî bê bikaranîn. Ji ber ku li wan deveran jî Kurd û Ereb û Turkmen dijîn."

Di vê navberê de Endamê Encûmena Parêzgeha Kerkûkê yê Fraksyona Erebî Mihemed Xelîl diyar kir ku ji ber hemû pêşniyarên ku ji bo pirsgirêka Kerkûkê dihatin kirin di berjewendiya tenê yek pêkhateyê de bûn, bê encam man.

# Talabanî: Serokwezîr Dr. Berhem Salih e


Dr. Berhem Salih

**Silêmanî (Rûdaw)** – Hat ragehandin ku Sekreterê Giştî yê YNK'ê Celal Talabanî roja 6ê tebaxa 2009an de li gel serokên herçar partiyên Lîsta Xizmetguzariyê civiyaye û ji wan daxwaza tevlîbûna kabîneya nû kiriye. Lîsta Xizmetguzariyê ji dû partiyên Îslamî û ji partiyên zahmetkêşan û sosyalîst pêk tê. Li gor çavkaniyan Talabanî di civînê de ragehandiye ku wê cîhgirê wî Dr. Berhem Salih bibde Serokwezîrê hikûmet nû.

Li gor agahiyan nûnerên partiyan bersîveke erênî nedane Talabanî û gotine ew dixwazin vê demê wek opozîson kar bikin.

Li aliyê din Lîsta Goran biraya xwe ya dawî da û ragehand ku wê beşdarî hikûmetê nabin. Nûnerê Lîsta Goran, Mihemed Tofîq Rehîm got, 'biraya wan ya dawîn ew e ku beşdarê hikûmetê nebin.'

Herwiha Tevgera Îslamî ku 2 kursiyan li Parlamena Kurdistanê bi dest aniye û Partiya Komunîst ku yek kursî stendiye jî diyar kirin ku wê tevlî damezrandina hikûmetê nebin.

Li gor çavdêran, wê Tirkmen, Aşûrî û Kildanî beşdarê kabîneya nû bibin.

# Kurdistan ji roj û bayê elektrîkê hildiberîne



**Îsa Evdilqehar**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Wezareta Elektrîkê ya Kurdistanê dixwaze bi hevkariya dû şîrketan ji tîşkên rojê û bayê elektrîkê hilberîne. Di derbarê mijarê de Şêwirmendê Wezîrê Elektrîkê dibêje: "Bo berhemanîna yek megawatt elektrîkê bi riya tîşkên rojê û bayê, pêwîstiya me bi 5 milyon Dolaran heye."

Niha şîrketa Zagros û şîrketeke Alman di derbarê 12 cihên ku wê santral lê bên danîn, agahiyan kom dikin. Bo vê yekê, sal û nîvekî dema lêkolînê hatiye diyarkirin.

Şêwirmendê Wezîrê Elektrîkê diyar dike ku wan 2 milyon û 500 hezar Dolar ji bo komkirina datayan xerckirine: "Ev pere ji bo ku hinek amêr bên danîn û xurtiya bayê û tîşkên rojê bi data bên komkirin û datayên baş bên bidestxistin, hatiye xerckirin."

Heta niha li Iraqê ji bo hilberîna elektrîkê feyde ji tîşkên rojê û bayê nehatiye dîtin. Bi vê projêyê Kurdistan dikare ji bilî av û gazê, elektrîkê ji tîşkên rojê jî hilberîne. Dilşad Şakir wiha dibêje: "Li seranserê cîhanê feyde ji tîşkên rojê û bayê tê girtin. Kurdistan devera yekem e di Iraqê de, ku dikare di riya tîşkên roj û bayê de elektrîkê hilberîne."

Li gor Şakir di projeya elektrîka Îstegeha gaza Hewlêrê de, dora 700 hezar Dolaran ji bo hilberîna yek megawatt elektrîkê tê serfkirin: "Jêderên enerjiya nû av û ba û roj e. Pir paqij e û jîngehê naherimîne. Herwiha berhemanîna elektrîkê erzantir dike. Pêwîstiya me bi sotemeniyê namîne. Jêderên wê xwezayî ne, lewra me hebûna projeyeke wiha li Kurdistanê pir baş û pêwîst dît. Cîhên ku ji bo danîna projeyê bên nîşankirin, wê li derveyî bajêr û cîhên ku xelk lê dijîn bin."

# 'Cîranên Kurdistanê ji encamên hilbijartinan nigeran in'



**Hawar Ebdulrezaq**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Lêkolînerê Peymangeha Indipendent a Amerîka û pisporê siyaseta derve ya Amerîka Prof. Dr. Ivan Eland, ku di heman demê de wekî ravêjkarekî parastinê yê Kongresa Amerîka kar kiriye, îsal pirtûkekî li ser siyaseta Amerîka li Iraqê bi navê 'Parçekirin di pêxema aştiyê de: Stratêjiya derketina ji Iraqê' belav kir. Eland ku li ser rewşa Iraq û Kurdistanê xwedî şarezayiyekî baş e pirsên Rûdawê bersivandin.

***Li gor encamên hilbijartinên Kurdistanê, partiyên opozîsyonê dengên baş anîne. Hûn bawer in bi vê encamê zemîna siyasî ya Kurdistanê hatiye guhertin?***

Hebûna tenê du partiyan sedema çêbûna lihevhatina neyinî ye û gendeliyê tîne holê. Li Amerîka jî heman pirsgirêk heye. Heta jimara partiyan zêde be, hewqasî baştire û alternatîfên din dide dengder û gendeliyê jî zehmet û dijwartir dike.

***Niha ew hest çêbûye, ku ji ber serkeftina Lîsta Goran li Silêmaniyê YNK lewaz dibe, hûn çawa difikirin?***

Belê, li vir YNK jar û lawaz bûye.

***Hûn bawer dikin ku bandora encamên hilbijartinan li ser lihevhatina di navbera YNK'ê û PDK'ê de hebe?***

Bi awayekî ne rasterast karîgerî dibe, niha rikeberî zêde bûye û lihevhatinên neyinî dijwartir in. Her wek di aboriyê de jî heye. Di siyasetê de rikeberiya zêde karekî tendurist e.

***Berevajî hilbijartinên din, partiyên Îslamî gelek deng neanîn, hûn wê çawa dinirxînin?***

Dibe Kurdan li beşên din yên Iraqê de li tundûtujiya olî û mezhebî temaşe kiribe û ew pîvan girtibin û ji xwe re gotibin 'na.'

***Bi dîtina we welatên cîran bi dîtina guhertinan di Kurdistanê de wê kêfxweş bibin, yan ew zêde dixwazin partiyên kevn li ser desthilatê bimînin?***

Welatên cîran herdem aliyekî dixwazin ku naskirî be. Herwiha alîgirê aramiyê ne. Ez bawer im ew niha nigeran in.

***Bi raya we çareseriya herî baş ji bo nakokiyên vê dawiyê yên di navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Malîkî çiye?***

Konfederaliyeke vekirî li Iraqeke ku Kurdistaneke otonom têde hebe. Baştir e Iraq li ser bingeha lokalî û herêmatiyê bê birêvebirin. Li cihê ku li ser esasa niştimanî rêve biçe.

***Vê dawiyê Grûba Krîza Navdewletî 'international crisis group' raporek di derbarê çawaniya çareserkirina pirsgirêka herêmên ku nakokî li ser wan heye belav kir û tê de pêşniyar kiribû ku rêveberiya Obama di vê pirsê de roleke mezintir bilîze. Bi dîtina we divê rola Amerîka di wê pirsê de çawa be?***

Ez bawer dikim divê berevajî be. Her çareseriyekî ku bêyî zanîn ji aliyê Washingtonê ve hatibe sepandin, di pêşerojê de wê ne rewa be. Wan pêwîstî bi lihevhatineke navnetewî heye.

***Gelo Netewên Yekgirtî dikare Kurd û Ereban neçar bike, ku ji bo çareserkirina pirsgirêkan lihev bikin***

Divê Kurd û Ereb çareseriyeke aştiyane peyda bikin. Eger ev yek nebe, dibe ku herdû alî Iraqê ber bi şerekî navxwe yê mezin bibin. Pêwîste dezgeh û ajansên navdewletî di wan gotûbêjan de roleke berbiçav bibînin, ji ber ku hebûna Amerîka li Iraqê ne rewa ye.

# Mexmûr: Dîsa rêvîngî?



**Rêbwar Kerîm Welî**

**Mexmûr (Rûdaw)-** Germjimêr ji jora 50 derece ye. Ji asmanan gur û toz dibare. Mexmûr wek çoleki bê sinor û bê dawi ye. Nêzikî 12 hezar mirov, bi pirani jin û zarok, di wan xaniyên kavil û wêran de, şev û rojê dikin yek. Van însanan şanzdeh sal berê malên wan li ser milê wan, ketibûn rê. Heta ku ew ji gundên xwe yên bav û kalan derketin û gihiştine Mexmûrê heşt kampên din guhertin. Wek ku çarenûsa wan de hatibe nivisandin heta ew hebin wê penaber bin.

Hewldanên dewleta Tirk ji aliyekî vê û yên Iraqê ji aliyekî ve. Tirkiye bi alikariya Amerika û Iraqê dixwaze kampê vala bike û ev 12 hezar însan vegerine 'welatê wan.' Artêşa Iraqê ji di demek nêzik de êriş bir ser Kampa Eşref, ku penaberên Mucahiden Gel li wir bicihbûne. Kampa Mexmûrê niha buye mijara gotûbêjên navbera Iraq û Turkiyeyê. Ew ditirsin ku qedera wan ji wek Kampa Eşrefê be. Dewlet li ser wan biryaran digrin, lê ew çi dikin, çi dibejin?

Kampa Maxmûrê Kurdistaneke biçûk e. Bi dibistanên xwe, şaredariya xwe, birêvebirina xwe model û prototipek Kurdistanê ye. Hejmara niştecihan 12 hezar kes in; nivê wan zarok, geleki jin û hineki zilam.

Di salên 1992 û 1994'an de ji Colemêrgê, Çalê, Şemzinanê, Wanê, Sêrtê û Mêrdinê koçkiribûn. Dewleta Tirk du rê dabû pêşiya wan: An wê çekan bigrin û li dijî gerîllayên PKK'ê şer bikin, an jî wê malên wan werin xirabkirin û ew jî bên kuştin... Cerdevaniyê qebûl nekirin. Di şevên tarî de ketin rê û berê xwe dane Başûr... Demeke kin de li Etrûşê civiyan, zêde bûn. 2-3 salan li wir man, ji xwe re xanî ava kirin, sewal xwedî kirin, erd ajotin û derfet bidîtana bazirganiyê dikirin. Zorderiya dewleta Tirk li ser wan bi dawî nebû. Careke din ketin rê. Vêca biryarê wan nedabû. Ji wan re çi hatibû gotin, divê wek wê bimeşiyan. Wan birin Ninovayê, cihê ku navenda Asûriyan bû... Li wir jî rihet neditin... Di sala 1999'an de careke din rê xuya kir... Îstasyona dawîn, bargeha wan a niha: Mexmûr.

Kamp di bin çavdêriya Netewên Yekgirtî (NY) de ye. NY ji bilî alikariyeke 'nemire û nejî' zêdetir tişteki ji wan re nekiriye. Zilam li Hewlêr, Silêmaniyê û Duhokê kar dikin. Çenmd avahî ji wan re avakiriye û nexweşxaneyeki ji ku heta dewama fermî heye, vekirî dimine. Niha, piştî yanzdeh salan Kampa Mexmûr bûye wek komareke serbixwe. Serokê şarevaniya wê heye û destûreke ji deh bendan tê bikaranîn. Herwiha li encûmenê rêvebirina kampê heye. Ji bo jiyaneke azad û bi disiplin ji xwe re meclisa gel û şaredarî avakirine. Endamên meclisa gel ji 45 kesan, endamên şaredariyê jî 12 kesan pêk tên. Hemû biryarên di derheqê jiyana kampê de li vir tên standin. Herwiha derfet ji bo pirsgirêkên tendurustî hene; elektrik û av jî heye. Hemû zarok, keç û law, wek welateki Ewrûpa divê herin dibistanê. Ders bi zimanê kurdî û îngilizî ne. Li kampê 3 hezar şagirt û xwendekar di 5 xwendingehên seretayî û yeke navendî û yeke amadeyî de, dixwînin. Herwiha, 200 xwendekarên Memxûrê di zaningehên Herêma Kurdistanê de xwendina xwe berdewam dikin û isal xwendekareki wan bi 98.5 puanan derçû! Heftenameyeke 8 rûpelî ya reş û spî çapdikin û tiraja wê jî beşeke mezin a rojname û heftenameyên herêmê zêdetir e. Dibe ku Mexmûr yekem civata Kurdên Bakur e, ku axaftin, xwendin û nivisandin tê de bi zimanê kurdî ye. Li Mexmûrê, zimanê kurdî serdest e, tu kes bi zimanê tirkî naaxive. Gelek ji wan bi zarava soranî dizanin.

Jinên Mexmûrê, çalak û jêhatî ne... Her yek dayika deh-diwanzdeh zarokan e. Piraniya wan bi mezinahî fêrî xwendinê bûne. Rêjeya nexwendewariyê li kampê, ji rêjeya wê ya li Başûrê Kurdistanê, gelek zêdetir e. Ji sedî 80'yê daniştvanên kampê xwende ne. Jinê bêkar li kampê tune ne, her yek ji wan bi tişteki ve mijûl e. Hinek ji wan fêrî dirûtina cilan dibin, hinek dewreyên fêrbûna makyajkirinê dibînin û hinek jî dersên dermankirina birînan dibînin. Ger tiştek nemîne, jinên Memxûrê rûdinin û bahsa siyasetê dikin. Daniştvaneki li ser pirsa "Tu dixwazî vegerî Tirkiyeyê?" dibêje "Erê. Lê Tirkiyeke ku wek mirovan li me temaşe bike, ne wek ajal!"

Daniştvanên kampê herçiqas piştî pêvajoya çareserkirina pirsgirêka Kurd li Tirkiyeyê, bi hêvî berê xwe didin pêşerojê, lê gûman dikin, ku bibin qurbanên bazirganiya navbera hikûmetên Iraq û Turkiyeyê. Gelek ji wan dixwazin vegerin warên bav û kalên xwe, lê ne stûxwar.



Wladimir Van Wilgenburg

# PKK'yî jî bi zarokan re dilîzin!

Roja çarşema borî, min rojeki li Çiyayê Qendîlê derbas kir. Di rê de em li seytereya kontola PDK'ê hatin sekinandin. Berpirseki asayîşê wêneyeki 'balkêş' ku min li ber baregeheke PDK'ê bi kalaşinkofekê û tevî sembolên PDK'ê vergirtibû dît. Piştî wêne dît rê da me. Lê got "neçin cem PKK'ê." Piştî demekê em meşiyan, me yekem noqtaya kontrola PKK'ê dît. Ez gelek ecêbmayî bûm.

Min nizanibû ez çi pêşbiniyê ji PKK'ê bikim, ji ber ku herdem ew wek "terorist hatine" pêşandan.

Rê bi alên PKK'ê hatibû pêçan. Gerilayan telefonên me ji me stendin. Paşê li gel berpirseki PKK'ê bi navê Roj Welat em çûn maleki. Mal tijî zarok bû. Min çavere nedikir gerîllayên PKK'ê ku li tenişt keleşinkofan rûniştibûn û bi zarokan re bilizin. Em li gel Berdevkê PKK'ê Ehmed Deniz li benda Cigirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Bozan Tekin bûn.

Roj Welat berê li Awustralya jiyaye. Ew ecêbmayî ye ku asayîşê rê daye me. Çekdarên PKK'ê bi kurdî û tirkî dizanin. Dû ji wan çekdaran di heman demê de "rojnamevan" jî bûn. Kamerayên wêne û videoyan û defterên nivisandinê bi wan re hebû. Dema ez bi Roj Welat re diaxifîm, min dît ew jî bi zarokan re dilizin. Li Tirkiyeyê wêneyeke wiha belav bûye ku PKK zarokan dikuje, lê li vir bi wan re dilizin.

Di rabirdû de û di dema êriş, şer û pevçûnan de li gel wan eşirên ku nêzikê Hikûmeta Tirkiyeyê bûn, malbatên wan çekdaran dihatin kuştin. Di şerê medyayî yê navbera Tirkiye û PKK'ê de wêneyên wan malbatan hatin belavkirin. Ji bo wê nerînê belav bikin ku PKK'yî dêwên dirinde ne. Lê dema mirov bi wan re xwarinê dixwe û diaxife, ew hest bi mirov re çêdibe ku ew kesên normal in. Di şerê navbera Artêşa Tirkiyê û PKK'ê de, herdû aliyan kesên sivîl kuştine. Dema min serdana Tirkiyeyê kir, Rêxistina TAK ku 'peywendiya wan bi PKK'ê re heye' bi teqinan çend turist kuştin. Lê destê Asayîşa Tirkiyê jî di bêserûcihkirina Kurd de heye.

Dû rojnamevanên Tirk yên kanala ATV jî gihan cem me û piştre me dest bi axaftina wêneyê PKK'ê di medya Tirkiyeyê de kir. Li gor wan rojnamevan dikarin bi hemû kesî re biaxifin; stranbêj, tawanbar, mafya, terorist... Wek mînak rojnamevan Johantan Randal bi Usama Bin Ladin re henek dikir. Wênegirê kanala ATV'ê wêneyê rojnamevanên Tirk digirt dema bi PKK'ê re xwarin dixwarin.

Dema ez ji Qendîlê vegeriyam, Kurdeki niştecihê Ewrûpa ragehand ku dibe ew rojnamevanên han sixur bin. Piştre dema min hevpeyvîn bi Serokê Lista Hiwa re kir, ew wiha têgihiştibû ku dibe ez sixur bim! Herwiha medyaya PKK'ê wan wêneyên Tirkiyê belav dike ku har û metirsidar in, lê belê li Hollanda û Tirkiyeyê bi çend kevneserbaz û berpirsên fermî yên Tirkiyê re axifîme ew jî bi zarokan re dilîzin.

Pirsgirêk ew e wî şerî wêneyeki dirust kiriye ew jî ast nizmiya dijmin e. Tu nikarî teqe li keseki biki kêfa te jê re were. Îdeolojiya siyasî û ayînî me jî hev cuda dike. Li Kurdistanê ez bi serokên partiyên Îslamî yên Kurdistanê re axifîme û bi wan re keniyame, di demekê de ku baweriya min nine. Mi axaftinên xweş li gel rêveberê asayîşê kirine, di demekê de ku hevalên min cara yekê jê ditirsiyan. Balkêş e xelk bi zarokan re dilizin û jî aliyekî din ve hewldidin hevdû bikujin, lê em çi bêjin; ev dinya ye!



# Xizmên windayiyan her li meydana ne

**Amed (Rûdaw) –** Li Bakurê Kurdistanê şer, çalakî û merasîmê cenazeyan didomin. Xizmên windayiyan di hefteya 27. de jî li Amedê aqûbeta windayiyên xwe pirsin. Şaxa Komela Mafê Mirovan (ÎHD) ya Amedê û xizmên windayan di hefteya 27. de jî li ber Birdara Mafê Jiyanê ya Koşuyoluyê çalakiya rûniştinê lidarxistin. Di çalakiyê de wêneyên windayan hatin hildan. Platforma Şaxên KESK'ê ya Amedê û MEYA-DER'ê jî piştgirî da çalakiyê. Rêveberê Şaxa ÎHD'ê ya Amedê Burhan Zoroğlu diyar kir ku 27 hefte ye jî bo diyarbûna aqûbeta windayan çalakî lidardixin: "Li gelek welatên cîhanê bûyerên tarî yên wek li Tirkiyeyê rûdane. Ji bo kujer derkevin pêşberî yasayan emê têkoşîna xwe bidomînin."

Piştre serpêhatiya Mehmet Günkan ku di sala 1994'an de li Gundê Akçayurtê yê navçeya Hênê ku hatibû girtin û agahî jê nehatibû girtin, hate vegotin. Daxuyanî piştî çalakiya rûniştinê bi dawî bû.

Li Rihayê jî 18 malbatên windayiyan li Kargeha Karakoyunê li hev kom bûn û jî bo zarokên wan bên dîtin û sûcdar bêne darizandin çalakiya rûniştinê pêk anin. Malbat piştî çalakiyê çûn serdana Rêxistina AKP'ê. Li ser navê malbatan Serokê Şaxa ÎHD'ê ya Rihayê Sedat Gözkıran xwest ku jî bo windayî bêne dîtin û kujer bêne darizandin, divê hikûmet gavan bavêje. Serokê Rêxistina AKP'ê ya bajêr Ahmet Düşünür jî diyar kir ku jî bo daxwazên wan pêk werin ewê têkevin nava hewldanan.

Merasîmê cenazeyan

Di encama operasyonên li dijî HPG'ê de hefta borî li deverên cuda 4 gerîllayan jiyana xwe ji dest dabûn. Malbaten endamê HPG'ê Şêx Alî Muhammed, Serkan Taş, Erhan Şimşek û Muhsine Ete cenazeyê zarokên xwe ji nexwaşxaneyan girtin û bi beşdariya girseyî wan definkirin.

Endamê HPG'ê Şex Alî Muhammed ê jî Kurdên Suriyeyê, li bajarê Îdirê di 27'ê tirmehê de li Taxa Yedi Kasımê di nav seyarê de jî ali timên taybet ve hatibû înfazkirin. Malbata Muhammed, cenazê zarokên xwe tevî Serokê Rêxistina DTP'ê yê Îdirê Ahmet Barbaros û rêveberên DTP'ê ve birin Arfînê.

Di pêvçûneke ku di 3'yê tebaxê de li Çiyayê Tendûrekê li Navçeya Elbaxa Wanê de qewimî jî Endamê HPG'ê Serkan Taş (Cûdî) û Abdurrahman Bekir jiyana xwe ji dest dan. Malbata Taş, tevî konveyeke qelebalix cenezeyê kurên xwe li Colemêrgê veşartin. Dayika Serkan Taş, Edibe, beriya biaxkirinê, herdû destên kurê xwe hene kir. Cenaze bi beşdarbûna 25 hezar kesan li Colemêrgê hat definkirin, ji bo taziyê kon hat vekirin. Parlementera DTP'ê Sebahat Tuncel û Şaredarê Colemêrgê Fadıl Bedirhanoğlu serdana konê taziyê kirin.

Endamên HPG'ê Erhan Şimşek (Xemgîn) û Muhsine Ete ji ku li çoltera Colemêrgê jiyana xwe ji dest dabûn, li Muş û Sêrtê hatin definkirin. Herdû gerîllayan di pevçûneke 5'ê tebaxê de jiyana xwe ji dest dabûn. Cenazeyê Erhan Şimşek li Navçeya Melazgira Mûşê û Muhsine Ete jî li Sêrtê hatin veşartin.

# Piştî 94 salan gîhîştin hev



**Wan (Diha) –** Malbateke Kurd ku di dema şerê cîhanê de ji hevdû veqetiyabûn, piştî 94 salan gîhiştin hevdû.

Malbata Îner ku ji Gundê Tiranisa Navçeya Elbaka Wanê ye beri 94 salan gihiştin hevdû. Malbat di dema şerê cîhanê de ji hevdû veqetiyabû. Endamên malbatên ku di encama lêgerîneki dûr dirêj de li Gundê Tiransê gihiştin hevdû.

Li gundê Tiransê yê Navçeya Elbaka Wanê, birayên bi navên Mustafa, Newroz, Alî û Hecî, di şerê cîhanê yê yekem de dixwazin biçin Zaxoyê. Zarokên malbatê, Newroz û Mustafa Îner, di dema şer de winda dibin. Piştî bûyerê Hacî Îner jî li Iraqê bi cih dibe. Alî Îner piştî demeki vegidere bakur, gundê xwe û li wir dizewice. Hacî Îner jî li Iraqê dizewice û li wir bi cih dibe. 3 zarokên Hacî Îner, bi navê Ekrem, Cemal û Kemal çêdibin. Hacî Îner di sala 1955'an de dimre. Cemal Hacî, piştî mirina bavê xwe li Iraqê dizewice û paşê diçe li bajarê San Diego yê Eyaleta Californiya ya Amerikayê bi cih dibe. Ekrem û Kemal jî, li Iraqê diminin.

Piştî salan kete nava lêkolînê Ekrem Hecî, piştî salênd dirêj ku fahm dike malbata wan di dema şer de jî hev veqetiya ye, dest bi lêkolinan dike. Ekrem ku jî lêkolînan encam digirê, jî birayê xwe Cemal, yê li Californyayê re dibêje ku bavê wan bi eslê xwe jî Gundê Tiranisê yê Navçeya Elbaka Wanê ye. Cemal jî, li ser vê yekê jî cîranê xwe yê jî Gundê Gerê Hisên Marûnisî re dibêje ku xizmên wan li Elbakê hene, lê tû agahiyan jî wan nastinin. Hisên Marûnisî di serdana xwe ya Kurdistanê de diçe Elbakê jî xizmên wî dipirse. Marûnisî li Wanê, xwe digijine xizmên malbata wendayî.

Endamên malbatê piştî ku bi telefonê têkilî datinin, di 25'ê tirmehê de li Wanê li gundê Tiranisê digijin hevdû. Jî endamên malbatê Ekrem dibêje kêfxweşiya xwe nikare bi gotinan bîne ziman. Hecî jî dibêje gihiştina piştî salan di nava malbatê de coşeki mezin afirandiye.

## Sûriye:

# Çakûçê Şamê Kurd û mafnasan tehdîd dike

**Şam / Qamişlo (Rûdaw)** - Rejima Baas ya Sûriyeyê ku bingeha wê ji alî Hafiz Esed ve hatiye danîn û niha ji ji kurê wî Beşar Esed birêvedibe, di warê çewisandin û ji hole rakirina opozisyonê herdem biserketiye. Tunebûna hêzeke dijber ku karibe rejimê tehdîd bike, firsendê didê desthilatdaran ku her tiştê dixwaze bê pirs û bê hesab bike. Di vê navberê de, di warê hewldanên bisinorkirina destdirêjiyên hêzên desthilatdar de, dengê xirecira berxwedanekê ji du aliyan derdikeve. Aliyek Kurd û tevgera wan ya siyasî ye û aliyê din ji rêxistinên mafên mirovan nin. Ew ji neçar in ku karê xwe bi awayekî 'ne yasayî' û veşartî bikin. Di hefta borî de nûçeya girtiya çend kesên din belavbûn. Du ji wan Şemsedîn Hemo yê endamê Partiya Yekîtî ya Kurd û Muhened Elhusnî yê Serokê Rêxistina Sûrî ya Mafê Mirovan, Sewasiye bûn. Bi daxuyaniyekê Partiya Yekîtî serbestberdana endamê xwe Şemsedîn Hemo – piştî girtina pênc rojan – di roja 2'ê tebaxê 2009'an de ragihandibû. Lê partiya wî di daxuyaniya xwe de careke din bal kişandibû ser endamên xwe yên din, ku heta niha di girtîgehê de ne. Çend ji wan girtiyan ev in:



Endamê komita siyasî ya partiyê Brahîm Bro, Nezmî Ebdulhenan yê 49 salî ji Efrînê, Ehmed Xelîl Derwêş yê 37 salî ji Kobanî, Başa Xalid Qadir yê 36 salî ji Kobanî, Dilgeş Şemo yê 27 salî ji Efrînê û Tehsîn Xeyrî yê 29 salî ji Efrînê. Daxuyanî bi tundî berdewamiya astengî û zora li ser kar û xebata partiyê rexne dike û doza rawestandina van kiryaran dike.

Ji alî din ve mijara girtina Serokê Sewasiye Muhened Elhusnî, ku ji 28'ê tîrmeha 2009'an de di girtîgeha Edra de ye, ket qonaxeke nû. Di roja 4'ê tebaxa 2009'an de Serokê Sendîkeya Parêzerên Sûriyê Mihemed Welîd Altiş doza bi navê 'mafê giştî' ya Elhusnî hilda ber destê 'konseya bi edeb kirinê' ji bo ku ji alî dozgerê yekem yê dadgeha Şamê weke cinayetkarekî bê darizandin. Cinayeta wî ew e; ''Xwestiye heybeta dewletê bişkîne û hestên neteweyî li cem miletê qels dike, moral û psikolojiya milet têkdibe û serokatiya rêxistineke illegal, ku bê destûrwergirtina ji sendîkeya parêzeran kardike û nûçeyên derew û şaş li ser dewletê belav dike.'' Ev kar hemû li gor parêzer Altiş dijî qanûna karê parêzeriyê ne û şerefa vî karî binpêdike. Roja sêşema 11'ê tebaxa 2009'an wek roja darizandinê hatibû destnîşankirin. Ev tawanbariyên ku hatine rêzkirin ji aliyê hevkarên Elhusnî ve hatine piştrastkirin. Yanî rejîm di riya rêxistina fermî ya parêzeran Elhusnî daye girtin û niha jî bi riya hevkarên wî vere wî dide dadgehê.

Vê yekê rêxistinên mafên mirovan yên ku bi awayekî veşartî kardikin dixe nav liv û tevgerê. Ji wan Komita Kurd ya Mafê Mirovan (Elrasid) di daxuyaniya 7'ê tebaxa 2009'an de bi awayekî rasterast bahsa xeterên li ser jiyana hemû çalakvanên mafê mirovan dike û bi taybetî parêzerên ku di nav vî karî de ne. Elrasid ji bo azadiya derbirîn û ramanê bang li Yekîtiya Parêzerên Ereb kir ku doza Elhusnî paş de bikşîne û li şûna darezandinê hewlbidin ku li kêleka hevkarê xwe bisekinin û wî serbest berdin.

Ji aliyê din ve ji diyar e ku xweşkirina têkiliyên rejima Sûriye bi dewletên Yekîtiya Ewrûpayê û bi dewletên Ereb re hêzeke dide rejîmê, da ku di van kirinên xwe yên dijî Kurdan û dijî parazvanên mafê mirovan dijwartir bike. Her ku têkiliya rejîmê bi derve re xurt dibe, li hundir ji hêza çakûçê – ku navê qanûne ye – li ser serê Kurdan û mafparêzên Ereb xurtir dibe.

# Neteweperestî û şûrê duserî



Mustafa Şefîq Edilbî

Çareseriya pirsgirêka Kurd li Bakurê Kurdistanê van rojan bi germî di rojeva Tirkiye û Kurdistanê de rûniştiye. Asoyên çareserkirinê heta astekî baş diyarbûne. Bi taybetî helwestên Serokkomarê Tirkiyê Abdullah Gül û partiya desthilatdar AKP di vî warî de helwestên erênî tên nirxandin û gelek hêvî jê tên kirin. Lê li hember vê yekê di nav eniya neteweperestên Tirk de dijberiyekî mezin tê dîtin, nexasim ji aliyê partiya neteweperestên Tirk MHP'ê. Daxuyaniyen vê dawiyê yên serokê MHP'ê Devlet Bahçelî bi her awayî bêhna faşîzmê ji wan tê. Di van daxuyaniyan de ne tenê dijberiya gelê Kurd, belkî dijatiyeke mezin li hemberî tevaya demokrasiya Tirkiye heye. Bê guman eniya neteweperest li her derê cîhanê li dijî demokrasiyê bûye, vêcar ev bizav li Almanya Hitler bê, an jî li Başûre Afrîka û Namîbya, an jî li Iraka Saddam Huseyin, yan jî li Tirkiye Kemalîst; li herderê dijminahiya demokrasiyê dike. Demokrasî û neteweparêziya kevneperest hertim li dijî hev bûnê, hebûna yek jî vana tê wateya mirina ya dîtir. Gelo ev pêşveçûnên dawiyê ji bo eniya neteweperesta Tirk di vî warî de tê çi wateyê? Çima ev bizav û bi taybetî jî MHP wiha har bûye? Ev pêkola ku dikin pêkola mirinê ye, yan jî wekî ku ew îdia dikin, ji bo parastina netewa Tirk e? Eger gavek kin em bizivirin dîroka sed salên dawiyê, mirov baştir dikare rewşa Tirkiyê û MHP'e fam bike. Li Ewrûpa rojava bi hatina neteweperestên Alman, Îtalyan û yên dîtir ya ser desthilatê, herkesî dît ku wan çawa cîhan di nava xwînê de gevizandin û heya ev hizre li ser kar bû, jî xeyni xwînrijtin û xerabûnê gelo tiştekî din ji bo mirovatiyê re ma? Lê tiştê giring ew bû; gelên ku ev ezmûna hanê dîtine, dikarin bi temamî rûyê xwe ji neteweperestiyê berbi bi jiyaneke demokratîk û hevbeş biguherin. Divê em careki din bipirsin; Gelo serkeftin di kîjanê de bû? Elbete heta tevgerên neteweperest ji siyaseta wan welatan nehatin dûrxistin, tu peşveçûn di warê demokrasî û mirovî de çênebûn. Ev rastî ji bo Tirkiyeyê jî nayê heman wateyê? 40 sal in ev hizir li Tirkiyeyê desthilat e. Başe kîjan pêşveçûn ji Tirkiyê re anî? Xerabkirina gundan, koçberkirina milyonan, fetisîndina di nava qeyranên civakî, aborî û siyasî de. Di dawiyê de jî darbe li ser darbe li demokrasiya Tirkiye xistin. Gelo derveyî vê yekê kîjan encamên baş ji gelên Tirkiyê re anin? Gelo israra li ser ve yekê, ji derveyî dijminahiya gelan tu maneyên din dide? Elbet nexêr. Eger Tirkiye hîn ji nekariye ji ezmûnên cîhanê dersan verbigre, hîn ji nekariye ji ezmûnên xwe jî tu encaman wergire. Divê tevgera demokrasiya Tirkiye bizanibe ku avahiya demokrasiyê wê li ser laşe kevneparêziya neteweperest werê avakirin. Di vê wateyê de AKP li hember şûrekî duserî ye: Yan ewê şerê neteweperestiya MHP'e bike û berokên demokrasiye xurt bike, yan jî ewê pêşeroja AKP'ê jî ya partiyên wekî DYP, ANAP û RP cudatir nebê. Di virde pirsa giring ku derdikeve ew: Gelo AKP neçar e pirsgireka Kurd çareser bike an na?

## Kurdên Rojhilat:

# Gelek kanal, kêm temaşevan!




**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Herdiçe kanalên televizyonê yên Kurdên Rojhilat li ser satalîtê zêde dibin. Her kanalekî girêdayê partiyekî siyasî ye. Niha bi navê Tişk, 'Aso Sat' 'Kurd Kanal' 'Rojhilat' û 'Komala' pênc kanal hene. Lê jiber ku hizbên siyasî dûrê gel ketine, ev kanal bala Kurdan nakişînin.

Damezrandina kanalên asimanî ji aliyê partiyên Rojhilatê Kurdistanê piştî sala 2005'an destpêkir. Yekem kanal ji alî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi navê Tişk hat avakirin. Piştre ji çend kanalên din hatin damezrandin.




Beşek ji temaşavanên wan kanalan dibêjin ji sedemê dubarebûna zêde aciz dibin. Ciwanekî ji Rojhilatê Kurdistanê, bi navê Yasîn di derbarê naveroka weşanan de wiha diaxife: "Ez dizanim pirsgirêkên wan gelek in, lê temaşevan bernameyên nû û tiji dixwaze, bernameyên dubare bala temaşevanan nakişîne."

Berpirsên kanalan ji sedemê xirabiya rewşa kanalên xwe wek lewaziya weşanê didin zanin. Berpirsê Kanala Kurd Kanal Ebdula Behramî bahsa televizyona xwe dike û dibêje: "Mixabin Kurd Kanal di warê teknîk, kadroyên pispor û aborî de xwedî derfetan nîne."

Karmendekî kanala Tişkê ji kêmasî û kêşeyê tenê di pirsgirêka aborî de nabîne û diyar dike: "Nebûna kadroyên jêhatî û pispor, ji wê jî giringtir nebûna projeya kar wisa kiriye ku ewqas perê ku li wan televizyonan tê xerckirin, heder biçe."

Heta niha wan televizyonan bala temaşevanan nekişandine. Dema xwe bi nişandana dîmenên Kurdistanê û belavkirina stranan derbas dikin. Gelek ber-




nameyên wê beşê wek 'Deng û Dîmen' hatine binavkirin. Ji ber ku ew kanal bi partiyan ve girêdayî ne, piraniya bernameyên wan ji di çarçova siyaseta hizban de ne. Berpirsê Kurd Kanalê di derbarê mijarê de wiha dibêje: "Hizban li televizyonan wisa kiriye ku jimareya temaşevanên wan kêm dibin."

Ji berpirsên Aso Satê Ferîba Mihemedî, di wê baweriyê de ye ku dûrbûna gel li ser kêmbûna temaşevanên televizyonan bandor dike: "Dema tu ji gel dûr ketî û nikaribî pirsgirêkên wan, xwezî û xwestekên wan bi duristî rave bikî, plan û bernameyan jê re amade bikî, tu nikarî bala wan ji bikşînî."



# "Malikî û Xamaney biryara êrişa ser Kampa Eşref dan"



**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Roja 28'ê tîrmeha 2009'an, Hêzên Polîsên Iraqê êriş kirin ser Kampa Eşrefê. Li kampê nêzîkê 3 hezar û 500 endamên Rêxistina Mucahidên Xelqê niştecih in. Berpirsê kampê Mehabadî, di derbarê êrişa li ser wan de, Serokwezîrê Iraqê Nûrî Malikî û Rêberê Olî yê Îranê Seyîd Elî Xamaney tawanbar dike.

Li gor çavkaniyên herêmî di êrişa polîsan de çend kes hatin kuştin, birîndarkirin û nêzîkî 500 kes hatin girtin. Li gor daxwiyaniya berpirsekî rêxistina navborî, di nav kesên binçavkirî de 4 kes hatine darvekirin. Polîsê Iraqê ji eşkere kir ku dema wan xwestine derbasî nav kampê bibin, endamên rêxistinê riya wan girtine û pevçûn derketiye.

Ji aliyê din Berpirsê Ragihandin û Pêwendiyên Derve yê Rêxistina Mucahidên Xelqê Ebdulrehman Mehabadî di derbarê êrişên sêşema borî de ji Rûdawê re wiha got: "2 hezar û 200 leşker, polîs û hêzên taybet avêtin ser kampê. Di encamê de 13 endamên me hatin kuştin û 500 kes ji birîndar bûn. Herwiha 38 endamên me ji hatin girtin û heta niha aqûbeta wan ne diyar e. Li gor agahiyan 4 kesên binçavkirî ji hatine darvekirin."

Mehabadî êriş wek binpêkirina peymanên navneteweyî hesiband û got ku piştî bûyerê re nedane birîndar bên dermankirin: "Ev êriş rastarast bi biryara Elî Xamaney û Nûrî Malikî hatiye kirin. Herwiha bila rê ji rojnamevanan re vebe ku karibin encamê êrişan bibînin."

Rêxistina Mucahidên Xelqê ya Îranê ku Amerîka ew xistine nav lîsta 'rêxistinên terorîst' û Îran ji wan wek 'munafiq' bi nav dike di sala 1965'an de li Tahranê ji alî rewşenbîrên Îranî ve ve hat damezrandin. Mucahidîn di sala 1979'an de tevlî Şoreşa Îslamî ya Îranê bûn. Piştre bi sedema nakokiyên bi karbidestên Îranê re di salên 80'an de bûn hêzeke çekdar a opozisyona Îranê. Mucahid di sala 1986'an de hatin Iraqê û li Kampa Eşref niştecîh bûn. Kamp 20 kîlometre nêzî bajarê Xalis a Parêzgeha Diyalayê ye. Serokatiya Rêxistina Mucahidan niha Mesûd Recewî dike. Niştecihên kampê piştî şerê Iraqê yê sala 2003'an de, ji aliyê hêzên Amerîka ve hat bêçekkirin

Kampa Eşref heta roja 01.01.2009'an di bin çavdêriya Amerîka de bû, lê piştî ku hêzên Amerîka asayîş û ewlekariya bajaran radestî hêzên Iraqê kirin, çarenûsa wê rêxistinê ji ket destê Hikûmeta Iraqê. Li aliyê din îsal Yekîtiya Ewrûpa, Rêxistina Mucahidên Xelqê ji lîsta xwe ya terorê derxist.

Piraniya partiyên Kurdên Rojhilat ji di derbarê êrişa ser kampê de nerazîbûnên xwe pîşandan û ji civata navdewletî xwestin ku bi lezgînî dawî bi wê rewşê bîne.

# Partiya Lîberal ya Demokratên Kurdistanê hat avakirin

**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Piştî cudabûn û parçebûnên li pey hev di nav partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê de, li bajarê Silêmaniyê partiyeke nû bi navê Partiya Lîberal ya Demokratên Kurdistanê (PLDK) hat damezrandin.

Ev partiya nû, ku ji 15 partî û rêxistinên Kurd yên Rojhilatê Kurdistanê avabuye, ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve dervayê yasayî hat destnîşankirin. Ji sazbendê partiyê Elî Zîrek, damezrandina partiya nû ji Rûdawê re wiha şirove kir: "Ji ber ku partiyên din yên Rojhilatê Kurdistanê bi gelê Kurdistanê re têkilî danaynin, avakirina vê partiyê ji bo me bû pêwîstiyek."

Elî Zîrek di derbarê armanc û bernameya partiya xwe de got ku di rêvebirî û meşandina kar û xebatên wan de sîstema rêveberiya partiyê ne navendî ye. Li gor Zîrek ev xaleke ku partiya wan ji partiyên din yên Rojhilatê Kurdistanê cuda dike û wan di damezrandina partiya xwe de ji bir û ramanên ezmûna PKK'ê sûd wergirtine.

# 'Li Almanyayê lobiya Kurd nîn e'



*Dr. Kemal Sido*

**Zeki Özmen**

**Kassel (Rûdaw) -** Çalakvanê mafê mirovan Dr. Kemal Sido ji Rûdawê re li ser lobiya Kurd ya li Almanyayê axivî û diyar kir ku hewldanên ji bo lobiyê ji berê ve hene lê belê mirov nikare bahsa hebûna lobiyeke Kurd ya li Almanyayê bike. Sido sedemên nebûna lobiya Kurd ya li Almanyayê ji wisa bi rêz dike: "Di vî warî de pirsgirêka bingehîn neyekbûyîna xîtaba siyasî ya Kurdan e. Xîtaba partiyên siyasî û komeleyên Kurdên li Ewropayê û ya li Almanyayê ne hevgirtinî ye. Dema tu bixwazî li Ewrûpayê lobiyeke te hebe, divê di xîtaba komeleyan û partiyan de hevdengî hebe. Pêwîst e Kurdên li Almanyayê bikaribin li gel hev rûnin û li ser armancên hevbeş xebatan bimeşînin. Bê yekîtiya Kurdan tu nikarî bahsa lobiyê bikî. Mînak, kesek here ji Almanan re bêje em vê û vê dixwazin û saeteke din kesekê din here bêje na wele em ne wê, lê tiştekî din dixwazin, wê demê lobiyekî ji nikare pêk were."

Sido li ser vê babetê dibêje ku divê armanc berjewendiyên hevpar yên Kurdan be û wisa berdewam dike: "Ez nabêjim bila hemû Kurd bibin yek lê divê di çarçova berjewendiyên hevpar re hevkariyê bikin. Li bajarekî bist sal in du komeleyên Kurdan hene lê hê rojekî neçûne çayeke hevdu nevexwarine. Bi kêmanî divê salê çend carekî komeleyên Kurdan li cem hev rûnin û ger ew di aliyê siyasî ve neyartiya hev jî bikin. Çûn û hatin gava yekem ya hevkariyê ye."

### Divê Kurd di nava xwe de yek bin

Dr. Kemal Sido ku Berpirsê Beşa Rojhilata Navîn ya "Rêxistina Gelên di bin Zextan de (GfbV)" ye jî, ne bi hevre karkirina Kurdên Almanyayê girêdayî rewşa siyasî ya welat dike: "Rastiyeke din jî ew e ku xebata partiyên Kurdan ya li Almanyayê girêdayî ya welat e û dema ji welat liv û tevgerên erênî werin, wê wextê Kurdên Almanyayê jî wê bilivin." Ew her wiha girêdayî vê yekê dibêje ku di vê serdemê de ji welat îşaretên baş jî tên. Wek mînak, nemayîna pevçûnên di navbera hêzên siyasî de û rabûna şerê bi riya çapemeniyê ya di nava bizavên Kurd de destnîşan dike: "Ev yek ji bandorê li Kurdên li Almanyayê jî dike û bi vî awayî aştiyeke sivîl çêdibe. Wexta aştiyeke di nava malê de çêbibe, wê demê mirov dikare xebateke berfirehtir çêbike. Ev yek dostên Kurdan jî motîve dike, ji ber dema Kurd li her deverê di nava şerê hev de bin, wê demê Kurd wê nikarbin bir û baweriyê bidin kesên din jî." Sido di wê baweriyê de ye ku dema Kurd daxwaza hevkariyê ji biyaniyan bikin lê belê di nava xwe de ne yek bin, wê wê demê ji Kurdan were xwastin ku bila di destpêkê de li hev bikin, dû re ew ê alîkariyê bikin.

Li ser pirsa rol û pêşigirtina dewletên desthilatdarê Kurdistanê ya li dijî hebûna lobiyeke kurd, ew vê bersivê dide: "Ew welatên desthilatdarê Kurdistanê gelekî xurt in û ev bi salan e têkiliyên wan yên germ bi van welatan re hene. Dema tu lobiya kurdî xurt bikî wê demê divê tu lobiya welatên dijber sist bikî." Li ser nêzîkbûna biyaniyên din û bi taybetî ya misilmanan ya bi Kurdan re jî, Sido bi vê mînakê behsa dezavantaja Kurd pê re rû bi rû ne dike: "Binêre, tu dikarî ji bo Uygurên li Çînê Musulmanan bidî hev, lê ji bo Kurdan tu nikarî Misilmanên Tirk, Ereb û Îranî kom bikî."

Ew her wiha bibîrdixe ku li Başûrê Kurdistanê faktoreke nû afiriye û bi van destkeftinan niha meseleye mirovî, moralî û hwd. ji holê rabû ye û meseleye berjewendiyên aborî derketiye pêş. Dr. Kemal Sido li ser vê babetê wisa diaxive: "Başûr niha jî hêla aborî ve sûkek e û herêm wekî deriyekî bi giştî ji bo Îraqê ye û ji wê yekê divê Kurdên başûr roleke baş bilîzin. Niha destpêkek e baş di vî warî de çêbûye. Dema di warê aborî de berjewendî hebin, wê demê piştgiriyek ji lobiyê re diafire. Bi vî awayî faktora sempatî ango antipatiyê dirabe û babeta berjewendiyên aborî dibin xwedî rol."

### Hevalbendiya hilbijêrên Alman giring e

Li ser rêbaza xweqûlkirina bi biyaniyan re jî Dr. Kemal Sido van mînakan dide. "Divê Kurd xwe bi şêweyekî medenî bi xelkê bidin nasandin. Wekî mînak, cihdayîna kêmeneteweyên din ya di destûra Kurdistanê de destê me xurt dike û em bi vê ve girêdayî dibêjin mafê wan hatine misogerkirin. Her wiha hevkariya rêxistinên bi Cihûyan re, bi Yûnan re, Ermeniyan, Suryanî û Asûriyan re giring e. Ji ber xetên miştereк hene û ev tiştên wiha rê divekin. Divê tu bikaribî xwe bi civak û siyaseta Alman bidî qebûlkirin. Mînak, girtinên otobanan antipatiyek li dijî Kurdan çêbûye. Divê tu bikarî wan îqna bikî ku doza Kurdan doza edalet û aştiyê ye. Dema hilbijêr bûne dostên te, wê demê partî jî mecbûr in bibin dostên te. Ji bo hebûna partiya bi dengê hilbijêran e. Gelek faktor hene ku dikarin civaka Alman ji bo piştgiriya Kurdan bikin hevalbend."

Em di herikîna hevpeyvînê de ji Dr. Kemal Sido pirs dikin ka gelo di rastiyê de Almanya bi xwe çiqasî meyldarê hebûna lobiyeke Kurd e. Ew vê pirsê wisa dibersivîne: "Têkiliyên dîrokî yên ji dema Osmaniyan ve bi Tirkiyeyê re hene. Lê faktoreke din heye; Antipatiyeke Almanan li dijî Tirkan heye. Divê mirov bikaribe vê antipatiyê bikar bîne. Ez nabêjim bi xerabî, mebesta min bi şêweyekî pozitîf e. Ev antîpatî hem di nava edebiyat û hem jî di nava civakê de heye. Divê bi vê ve girêdayî mirov bikaribe sûdê jê bistîne. Dibe ku siyaseta giştî yan jî hin dezgeh li Almanya konservatîf bin, lê gel ne konservatîf e, dema argumentên nû bibînin, dikarin zû bir û baweriya xwe biguherînin û hem bibin alîkar û hem jî bibin dost."

### Feydeya hevkariya bi çepên Alman re nîn e

Sido meyldariya Kurdan ya di nava partiyên çep yên Alman de ji rexne dike dibêje ku hêzên çepgir nikarin li Almanyayê di warê lobiyê de alîkariya Kurdan bikin. Ew vê rexneya xwe girêdayî rûdanên dîrokî dike û wisa dibêje: "Komunîzmê di dîrokê de ziyan daye Almanên li deverên din dijiyan. Tu nikarî di bin dirûşmeyên çepgiriyê de Almanan ji xwe re bikî dost. Çênabe tu dirûşmeyên çepgirî bavêjî û alîkariya Almanyayê bixwazî. Li Fransa û Îtalya belkî îhtimal be lê dema tu li Almanyayê bixwazî xebatê bikî, divê tu partiyên sereke yên wek CDU/CSU, FDP û SPD ji xwe re bikî dost. Gelek çepên Alman ji xwe provokator in û bi vî awayî navê Kurdan ji xera dikin."

Her wiha Dr. Kemal Sido bi taybetî meyldirtina Kurdên Bakur bi çepêtiyê ve wek tiştekî



objektîf dinirxîne û vê yekê wisa bi lêv dike: "Tirk şerê Kurdan dikin û Tirkiye endamê NATO'yê ye. Dema tu li dijî Tirkiyeyê têbikoşî, divê tu çepgir bî. Lê divê bizava Kurd pragmatik be. Pêwîst e bizava Kurd bi çepgiriyê re ´nezewice´. Erê çepgirî tiştekî objektîf e lê divê tu nebî aşiqê çepgiriyê û fikirandina pragmatîkî giring e."

Sido di dawiya hevpeyvînê de balê dikişîne li ser rola giring ya xwendekarên Kurd yên li zanîngehên Almanyayê û bang li partî û rêxistinên siyasî yên Kurd dike ku rê ji wan re vekin: "Ez ji xwendekarên Kurd yên bi zimanê Alman, dîrok û edebiyata wan dizanin bi hêvî me. Kadroyên partiyan ji welat tên, rewş û dîroka Almanyayê nizanin û ji wê yekê nikarin karê lobiyê bikin. Erkên bi vî rengî divê ji bo xwendekaran werin dayîn. Pêwîst e piştgirî ji xwendekaren re were kirin û ev yek peywira hêzên siyasî yên Kurd e. Partiyên Kurdan heta niha hêza potansiyela xwendekaran bikarnanîne. Pirsgirêka mezin di vî warî de ew e ku her kes hewldide xwendekaran ji bo berjewendiyên partiyên xwe yên teng bikarbîne."




## 'Divê gerîlla dest ji çek bernede'

**Berlîn (Rûdaw) -** Bi bangawaziya Civata Kurd (Kurdisches Gemeinde) ya li Berlinê civîna rewşenbîrên Kurd pêk hat. Civîn bi tevlêbûna 50 rewşenbîran li avahiya YEKMALê (Yekîtiya Malbatên Kurdistan) pêk hat. Rewşenbîran li ser pêvajoya dawî fikir û pêşniyarên xwe anîn ziman û destnîşan kirin ku, "Pirsgirêka Kurd di rewşeke hesas re derbas dibe. Di demên dawîn de lêgerîn û niqaş tên kirin, hin daxwiyaniyên rayedarên Tirkiyê hene, saziyên wan yên sivîl jî di nav xwe de hin niqaşan dikin. Pêwîst e em jî wek rewşenbîrên Kurd yên li Berlînê ji bo alîkariya vê pêvajoyê têkevin nav gengeşiyan û helwest û pêşniyarên xwe zelal bikin."

Li ser navê rewşenbîran Cemal Ballıkaya di derbarê civînê de hin agahî dan Rûdawê û da xwûyakirin her kesî yekoyek di civînê de fikrên xwe gotine.

Li gorî nivîskar Cemal Ballıkaya ji civînê ev pêşniyar derketine holê: Divê hêzên çekdar yên Kurdan baweriya xwe bi dewleta Tirk neyînin. Jiber ku firsendê bibînin komkujiyê pêk tînin.

Pêvajoya aştiyê divê di kontrola hêzên navnetewî de be.

Nasnameya Kurd bi awayek fermî di zagona bingehîn de cih bigire. Hemû girtiyên Kurd yên siyasî werin berdan.

Ger aşitî hebe ji pêwîst e gerîlla çek bernede û li herêmê wek hêzên ewlekariyê bimînin.

Jiber ku gerîlla tenê ji bo Bakurê Kurdistanê dest bi şerê çekdarî nekiriye.

Kurd karibin bi zimanê xwe di dibistanan de perwerdeyê bibînin û di hemû qadên jiyanê de bikar bînin. Divê rêvebiriya herêmê di destê Kurdan de be.

Hêjayî gotinêye rewşenbîrên wekî Riza Baran, Dr. Gundi Dilberz, Cemal Ballıkaya, Giyaseddin Sayan, Kazım Baba, Felemez Başboğa, M. Silêman Reşît, Fehmi Balayî, Hêvî Berwarî, Feyad Osman, Milazim Köker, Muhsin Osman, Edib Xaneqîn, Salar, Günay Darıcı, İsmail Parmaksız tevlê civînê bûn.

# Kardo li Ukraynayê bawernameya sor wergirt

**Soran Behaedin**

**Hewlêr (Rûdaw) -** Ciwanê Kurd Kardo Nûredîn Kerîm, li Ukraynayê bawernameya herî bilind di warê endazyariya parkan de wergirt û bi vê yekê bû yekem biyanî li welatê Ukrayna ku di wî warî de pileya masterê werdigrê. Şagirdê zîrek ev demeke vegeriyaye Kurdistanê.



Kardo Nûredîn Kerîm ku ji Hewlêrê ye 26 salî yê. Ew beriya sê salan ji bo xwendina masterê çûye Ukrayna. Kardo heyamê salekê li wir zimanê Rûsî xwend, du salên din jî ji bo xwendina masterê di warê rêxistin û nûkirina pîlana parkên giştî, li zanîngeha Loganski Taras Shfishinko ya Niştimanî terxan kirin. Piştî qedandina xwendinê, Kardo mastera bi pileya herî bilind, ya bi rengê sor stendiye. Tê wate ya pileya şanazî û şerefê.

Piştî xelaskirina Kolêja Çandiniyê li Zanîngeha Selahedînê, Kardo ligel 13 ciwanên din diçe Ukraynayê. Ji bo xwendinê Kardo zimanê rûsî hildibijêrê, ji ber ku zimanekî berfirehe û li 20 welatan zimanê fermî ye. Ciwanên Kurd di nava 13 grûban de pileya yekem bidest dixin û zû hînî zimanê rûsî dibin. Kardo beşa riwekî, di warê dar, gul û dizayna baxçe û parkan de xwendiye. Ji ber ku heta niha li Kurdistanê kesî di wî warî de heta asta master nexwendiye. Ji bo beşa pratîk ya xwendina xwe Kardo kar li ser nûjenkirina parkeke kevn bi navê 'serpêhatî' bi mezinahiya 54 hezar mêtreçargoşe kiriye. Şeş mehan li wê parkê kar kiriye û karê wî şaredarî û profesorên wî matmayî hiştiye. Xebata wî wekî dizayna herî bedew û xweşik tê hesibandin.

Li gor Kardo, Ûkrayniyên ku wê pileyê bidest dixin, li ser hesabê dewletê ji bo zanîngehên herî baş yên cîhanê tên şandin: "Li zanîngehê jî ji min re gotin, ku ez yekem kesê biyanî me, ku ew vê bawernameyê didinê."

Ukrayna 19 sal in ji Yekîtiya Sovyeta berê veqetiyaye û bûye dewleteke serbixwe. Hejmara şêniya wê 48 milyon e. 28 bajarên mezin li vî welatî hene. Nifûsa bajarê Logansk ku Kardo lê dixwend milyonek û nîv e.

Kardo salane 10 hezar dolar li wî welatî xerc kiriye: "Me digot em ji Kurdistanê ne, nedizanin Kurdistan li kuderê ye. Eger me bigota em Iraqî ne, wê em wek terorîst bihesibandana."

Kardo ku niha vegeriyaye Kurdistanê, dixwaze zanîna xwe bikarbîne û bi wan zanyariyên ku li Ukraynayê hîn bûye, şeqamên Hewlêrê bixemilîne: "Ez dikarim guhertinê di dizayna parkên Hewlêrê de pêk bînim, bo mînak Alaya Kurdistanê bi gulê çê dikim. Ji bo vê jî divê ez cureyên gulan bi awayekî hilbijêrim, ku temenê wan li hev nêzîk be û rengên wan jî bigunçin. Ji bo wê jî min tovê gulên cur bi cur aniye."

# "Divê Kurd çekên xwe ji dest bernedin"

**Edîp Bedîrhan**

**Enqere (Rûdaw)** - Civaknas û dostê Kurd, Dr. İsmail Beşikçi di derbarê jiyana xwe ya taybet, pêşbîniyên xwe, nîqaşên di derbarê pêvajoya çareserkirina pirsa Kurd de û rexne û pêşniyazên xwe yên ji bo Kurdan ji Rûdawê re ragehand.

***Bawerdikim hûn bi Kurdî nizanin. Çima hûn fêrî Kurdî nebûn?***

Rast e, ez bi Kurdî nizanim. Carna tiştên ku mirov ji bo fêrbûnê dide pêşiya xwe pêk nayên.

***Hun qet neçûn Amedê yan jî Hewlêre. Li ser Kurdan nivîsên we berdewam in lê hun tevlî civîn yan jî xebatên Kurdan nabin. Sedemeka taybet heye ?***

Ez bawer im sedema vê yekê tê zanîn.

***Çi li ser we tesîr kir ku hun di derbarê Kurdan de têkevin nav lêkolînên zanistî?***

Ji sala 1960'an vir de ez hewldidim ku Kurda û pirsgirêkên wan fahmbikim. Piştî cûntaya 27'ê Gulanê ya sala 1960'an, li Tirkiyeyê di warê azadiya fikir û raman de geşbûn çêbû. Di derbarê Kurdan de nîqaş hebûn. Ez wê demê li fakulteya zanistên siyasî ya Enqereyê xwendekan bûm.

***Naskirina we ya destpêkê çawa çêbû?***

Li fakulteyê bernameyeka stajê hebû. Bi riya vê stajê ez çûm Rojhilat, derdora Elezîz, Keban, Dep û Paloyê. Wê demê digotin, ''Kurd, Tirk in.'' Lê min li wir dît ku qeymeqam bi gundiyan re bi reya wergeran dîaxifî. Yanî min dît ku zimanê Kurdî ne Tirkî ye û zimanekî cuda ye. Naskirina min a Kurda cara destpêkê li vir bû. Herwiha paşê di sala 1964'an de ji bo leşkeriyê jî min dîsa wargehên Kurda tercîh kir. Ez li Bedlîs û Colemergê mam.

***Dema dibêjin Kurd, çi tê bîra we ?***

Dema dibêjin Kurd, gelekî mazlûm ku hemû mafên wê yê mirovî û xwezayî ji dest hatiye standin, tê bîra min.

***Hûn ji ber keda xwe qet dibêjin ''Kurdan di filan tiştî de min vala derxistin?''***

Nexêr. Ev pirsa we şaş e. Belkî hinek tiştên ku min hêvîdikir çênebûn, lê divê mirov li dema pêş binêre.

***Ez dixwazim niha li ser rexnekirina di nav Kurdan de bipirsim. Divê Kurd mekanîzma rexnekariye bikarbînin?***

Rexne gelek caran wek heqaretê tê fahmkirin. Lê di rastiyê de rexne rêbaza herî girîng ya jiyana ramanî ye. Yanî mirov nikare dest ji vê mekanîzmayê berde. Dema ku yek li ser hinek tiştan fikir û ramanên xwe tîne ser ziman, yên din jî dikarin li ser van gotinan fikrên xwe bêjin. Dikarin tiştê ku tevlî dibin an jî nabin bînin ser ziman. Pergala rexneyê wisa dixebite. Rexneya azadane, di nav jiyana ramanî de tiştek bêhempa ye. Bê rexne jiyan nabe.

***Hun Hikûmeta Herêma Kurdistanê çawa dibînin? Ji bo wan pêşniyarên we hene gelo?***

Ez rêvebiriya Herêma Kurdistanê pirr baş dibînim. Di sala 2003'an de piştî ku Amerîka li Saddam da, pêşiya Kurdan vebû. Ruxana rejîma Baas, îmhakirina çekên komkuj û belavkirina El-Muxaberatê pêşiya Kurdan vekir. Kurda zanibûn ji vê pêvajoyê fêyde bigrin. Rêvebiriya Herêma Kurdistanê wisa çêbû. Fikrên Iraqeka federal bi Amerîka, bi Erebên Şia û yên Sunnî dane qebûlkirin. Ev serkeftina Kurda ye. Lê di milê dîn de, pêşveçûnên ne baş jî di nav rêvebiriya herême de çêdibin. Dive mirov li ser sextekarî, bertîl û gendeliyê bisekine. Divê mirov li hember van tiştan bitêkoşe. Di hilbijartinên vê dawiyê de Lîsta Goran ji sedî 25 ji dengan girt. Wê li gor vê di parlemena herêmê de cîh bigre. Ez wisa difikirim ku tevgera Goran di tekoşîna li hember sextekarî û bertîlkarariyê de dê roleke mezin bilîze. Divê mirov xwekuştina jinan jî ji ber çav dûr negre. Herweha firezewac û sinnetkirina keçan jî divê were ser ziman. Divê Kurd di van aliyan de jî li gor cîhana nûjen tevgerin. Divê Kurd di warê avakirina santralên elektrîk û pêşvebirina kiştûkalê de jî gavên mezin bavêjin. Newekheviyên di belavkirina derameta de jî divê werin çareserkirin. Herweha mafên Ezîdî, Aşûrî-Suryanî û Keldaniyan jî gelek girîng in.



*(Wêne: Hülya Yetişen)*

***Hun têkiliyên Kurda yên bi Amerîka re çawa dinirxînin? Gelo Amerîka dîsa Kurdan nexapîne?***

Ji bo Kurda, di warê pêşxistina têkiliyên bi Amerîka re pirsgirêk tuneye. Divê ji fikrê Iraqa federal, rêvebiriya Herêma Kurdistanê, pêkanîna xala 140, derametên neftê û ji statuya saziya pêşmergeyan tawîz neyê dayîn. Li gor min, Kurd divê li ser van esasan bi Amerîka re têkîliyên xwe deynin. Divê Kurd ji bo xwestekên Tirkiyê û Amerîkayê yên di derbarê PKK'ê de nebêjin "erê." Heta roja îro, Kurdan xwestekên wan bi cîh neanîn. Divê ev polîtîka bi biryar bê domandin. PKK jî divê di derbarê Başurê Kurdistanê de ji xwestekên Tirkiyê re nebêje "erê." Tirkiye dixwaze PKK li hemberê Herêma Kurdistanê û pêşmergeyan şer bike. Hêviya Tirkiyê bi vî rengî ye.

***Nêrîna Amerîka ji bo Kurda, bi taybet jî ji bo PKK çî ye li gor we? Gelo guhertinekî di nêrîna Amerîka de heye an na?***

Ez wisa difikirim ku polîtîkaya Amerîka ya ji bo Kurda mayînde ye. Li Iraqê di nava jiyana civakî ya Kurd û Ereb de gelek cudahiyên mezin hene. Lê dîsa jî hêzên wek Tirkiye, Sûriye, İran, Federasyona Rusya, Amerîka, Yekîtiya Ewrûpa û herweha yên din hertim bahsa yekgirtina xaka Iraqê dikin. Ev jî nîşandide ku Amerîka di polîtîkaya xwe ya Kurdan de xwestekên Tirkiyê, İran, Iraq û Sûriyeyê li ber çavan digre.

***Hun ji bo yekîtiya Kurdan çi difikirin? Li gor we kîjan zîhniyet li pêşiya yekîtiyê asteng e?***

Di vir de tiştê herî girîng ev e; Kurd divê hertim siyaseteke vekirî bişopînin. Di têkiliyên dîplomatîk te jî ev hîm divê esas be. Tirkiye bi xetên xwe yê sor, dixwaze vê pirsgirêkê bi mafên ferdî û çandî çareser bike. Mesela hêza sereke ya desthilatdar li Tirkiyê artêş e û artêş dixwaze mesela Kurd bi vî awayî çareser bike. Divê Kurd xwedî siyaseteka vekîrî bin. Wek mînak, gotina Celal Talabanî ku dibêje "dewleta Kurd xeyal e" û dîsa wek nivîskar Yaşar Kemal ku dibêje "Kurd dewletê naxwazin" şaş in. Mafê tu kesî tune ye ku ambargo deyne ser îradeya pêşeroja Kurdan. Li cîhanê 206 dewlet hene û şêniya hinek ji wan ji 500 hezar kesî kêmtir in. Pirsa sereke ya din di derbarê Kurdan de ev e; li gel şêniyeke ewqas mezin, Kurdan çima tiştekî bi dest nexistine? Çima ji bo dewtletbûnê îsrar nekirine? Perçebûna Kurdistanê ne ewqas pirseka biçûke ku ji ber çavan bireve. Hem li Bakur û Başûr, hem jî li Rojhilat û Rojava Kurd ji hevdû tesîr digrin. Pêşveçûneke baş a li cîhekê Kurdistanê li cihên din jî li ser hemû Kurda tesîrê dike.

***Hûn çawa li dîaspora Kurd dinêrin?***

Ez di wê baweriyê de me ku peyva dîaspora rast nayê bikaranîn. Kurdên ku li herderê cîhanê belavbûne, li gor rêxistinên xwe siyasetê dikin. Dîaspora divê wek rêxistineke sîwan ew hemû rexistinan di bin siya xwe de bicivîne. Ev rêxistin wê bi hemû pirsgirêkên penaberên Kurd re mijûl bibe. Wek kar, aş, hewandin, tendurustî, perwerde û tiştên din. Lê mixabin di nav Kurdan de rêxistineke wiha tune ye. Carna bahsa konferanseke Kurd tê kirin. Belkî konferanseke wisa dikare rêxistineka dîasporayê biafrîne.

***Di van demên dawîn de projeyên gav avêtina di derbarê çareserkirina pirsgirêka Kurd de ketine rojeva Tirkiyeyê. Gelo ev pirsgirêk bi rastî ji ketiye riya çareseriyê?***

Pirsgirêka Kurd û Kurdistanê ne pirsgirêkeke wisa asan e ku di demeka kin de were çareserkirin. Belkî demeke nîvdirêj de riya çareseriyê derkevin holê. Dibe ku hinek guhertinên cîddî û gelek girîng çêbibin. İro bahsa gav avêtinê tê kirin. Ji bo ku ev gav mayînde bin, divê dewlet ji bo salên borî xwe rexne bike û bikaribe bi paşeroja xwe re rû bi rû bibe. Dewletê di dîroka xwe yê komarê de li hember Kurdan siyaseteke îmha û înkarê birêvebir. Dewlet dixwaze bê ku xwe rexne bike hinek gavan bavêje. Bê guman ku civîna Beşîr Atalay a bi 15 nivîskar u karmendên zanîngeha re ku li mala polîsa pêkanî tiştekî gelek girîng e. Di vê civînê de navê pirsgirêkê jî hate dayîn. Gotin, ''çareseriya pirsgirêka Kurd û ber bi modela Tirkiyê ve.'' Ev tişteke gelek girîng e. Lê dewlet dîsa jî divê bi paşeroja xwe re rû bi rû bibe. Di bingehê pirsgirêka Kurd de siyaseta îmha û înkarê heye. Gav avêtin di heman demê de ji siyaseta îmha û înkarê paşve gav avêtine. Lê li milê din pirsa PKK'ê heye. Ev pirsgirêk jî divê bi PKK'ê re bi awayê hevdîtinan were çareserkirin.

***PKK divê çawa nêzîkî vê pêvajoyê bibe? PKK jî, dewlet jî dibêjin ''em guherîn.''***

Zeman hertiştî diguherîne. Di nav zeman de raman û polîtîka jî diguherin. Tiştê girîng ew e ku mirov bikaribe van guhertinan bi zimanekî zanistî bi raya giştî bide fahmkirin.

***Di roja îro de, hûn çawa li tekoşîna çekdarî dinêrin?***

Mirov dikare bi riyên siyasî tekoşîna xwe bidomîne. Lê divê çek werin parastin. Ji bo vê yekê jî divê herî kêm otonomî were xwestin. Destberdana PKK'ê ya çekan nîqaşeke şaş e. Ev ne rastî ye, hêvîyek e. Hêviya Tirkiyeyê, çapemenî û ronakbîrên wan e. Herwiha hêviya hinek ronakbîrên Kurd e jî. Çekdanîn û tasfiyekirin bi hevdû re tên nîqaşkirin. Ev gelek şaş e. Divê hemû Kurd li hemberî vê yekê bisekinin.

***Gelo hun ji bo vê pêvajoya çareseriyê bi hêvî ne an ne?***

Bele, ez bi hêvî me.

***Mamoste Beşikçi debara xwe çawa tedarik dike?***

Di vî warê de tu pirsgirêka min nîne.

***Malbata we heye gelo ?***

Belê, heye.

***Hûn wextê xwe çawa derbasdikin?***

Ez zêdetir, dixwînim û dinivisînim.

***Hun qet televîzyonê temaşedikin?***

Ez pirranî li nûçe û belgefîlman temaşedikim.

***Nava we û muzîkê çawa ye mamoste?***

Ez guhdariya muzîka klasîk a Rojava û dengbêjên Kurdan dikim. Gelek ji heyranokan hezdikim. Van roja bernameyeke li ser Doktor Qasimlo di kanala Kurd1'ê de hebû. Bernameya bi navê 'Dîroka Me' li ser bîranîna Qasimlo çêkiribûn. Di dawiya bernamê de Xarabêtê Xaço heyranokekî distre. Kêfa min gelek jê re tê. Ez vê muzîkê hertim guhdar dikim.

***Cîranên we yê Tirk çawa li we dinêrin?***

Di vî warê de jî tu pirsgirêk nîne.

***Xebateke we ji bo pirtûkek nû heye ?***

Erê, ezê nivîsên xwe yê ku di malpera Kurdistan-Post û Peyamaazadî de hatine weşandin bikim pirtûk.

## Nivîskar Hesenê Metê:

# Ez ji populîzma medyatîk heznakim

**Evdila Koçer**

**Dresden (Rûdaw)** - Hesenê Metê ji aliyê rewşenbîriya Kurd û xwînerên kurdîhez ji nêzîk ve tê naskirin. Hinek wî wek Çexovê Kurdan destnîşan dikin, hinek wek hostayê kurteçîroka kurdî, hinek jî wî wek romannûsekî payebilind binavdikin. Pirsên me û bersîvên Hesenê Metê:

***Gelo Hesenê Metê kesekî çawa ye? Tu dikarî ji xwênerên Rûdawê re hinekî bahsa xwe bikî?***

Carina acisiya min ji der û ji hindurê malê jî çêdibe, lê ez bawer dikim ez ne yekî hişk im ku bi biryar û gotinên xwe hinekan ji daxwazên wan bêpar bikim.

***Tu zêde dernakevî pêşberê medyayê û tevlî panel û bernameyan nabî. Xêr e, sedema vê yekê çi ye?***

Ya rastî, ez ji populîzmê û bi taybetî populîzma medyatîk heznakim. Ji ber ku tiştê ez dikim ne karekî populîst e. Lê ku pir pêwîst bike ez dikarim derkevim televîzyonan jî.

***Dema ku tu li straneke Kawîs Axa di Roj TV û an jî di TRT 6'ê de guhdarî dikî, gelo hingê bîr û hîsên te wekhev in?***

Di dema dengê kurdî peşka Îranê de, an jî dema Radyoya kurdî li Iraqa dema Saddam de... Kawîs Axa dengê wî her wek xwe bû û her ew hîs bi min re çêdikir. TRT 6 jî her ew aparat û her ew dezgeh e. Dîtin û baweriyên min ên li ser weşanên Îran, Iraqê û TRT 6ê yek e, lê dengê Kawîs Axayî her ew deng e.



***Belê, em vegerin ser nivîskariyê. Gelo nivîskarî bi rastî jî dayîneka xwedê ye, an nexweşiyek e, an jî tişteke din e?***

Nivîskarî, pareke ji nexweşiyê, pareke ji dayîneke Xwedê û pareke jî ji alavên derbirîna êş û azara jiyanê ye ku nivîskar, an jî tenê ez dixwazim pê giraniya jiyanê li xwe sivik bikim. Wate ya wê jî wiha dizanim ku nivîskar ji herkesî bêhtir bi giranî û îzet-î nefsa gotinan dizanin, an jî divê wiha be.

***Heger sibê ciwanekî Kurd dest bi nivîskariya kurdî bike, gelo tu yê çi şîretan lê bikî?***

Ez naxwazim şîretan li kesekî bikim, lê wek tecrûbeyên xwe bibêjim: Yekî ku bixwaze binivîsîne, heta ku ji wî tê divê dilsoz be. Bi gotinên xwe re, bi hevokên xwe re, bi qelem û qehremanên xwe re û bi xwêren xwe re divê samîmî be. Samîmiyet jî ew e ku ji dil binivîsîne, divê bi nivîsandina xwe re bijî, bi qehremanên xwe re bijî.

***Bi ya te projeyên dewleta Swêdê yên ji bo kurdî çi li nivîskariya Kurdên Swêdê zêde an jî kêm kir? Piştî qutbûna van projeyan, li Swêdê gelek kovar û weşanxane hatin girtin, gelek kesan dev ji nivîsa kurdî berdan...***

Lê Swêdê ji projeyan bêhtir, mentalîte an jî sîstemeka rûniştî heye. Mafên ji bo hemû zimanan bêguman ji bo kurdî jî heye. Ev alîkarî belkî ji hemû zimanan bêhtir ji bo me Kurdan û zimanê kurdî tiştekî gelekî baş bû, hîn jî wiha ye. Dibe ku hinekî kêmkirine, nizanim. Dibe ku weşana hinek kovaran rawestiyabe. Lê ez bawer nakim ku hinekan ji ber vê yekê dev ji nivîskariyê berdabin. Li Swêdê bi têra xwe hîn jî nivîskar hene.

***Baş e, li aliyê din tê gotin ku gelek nivîskar û malper ji Hikûmeta Kurdistanê pere werdigirin...***

Binêre, tu jî dibêjî "tê gotin... " Kes nizane ev tişt heye an na, kes nizane ku kîjan malper an nivîskar ji kuderê çiqas alîkariyê werdigire. Ev ji bo erd û îdareyekê, ji bo civakên sivîl tiştekî gelek kirêt e. Çima ne tiştekî rast be ku malper, rojname, weşanxane û nivîskar alîkariyê ji hikûmeta xwe bixwaze? Tiştekî ne rast ew e ku dewlet, hikûmet an jî îdareyekî bi karekî wiha ranebe. Ji bo hikûmetekê, ji bo dewletekê binbari ye ku alîkariya malper, kovar û weşanxaneyên xwe bike û bê ku alîkariya xwe li serê wan bike minet.

***Heger tu bûbuya wezîrê çandê gelo te yê ji bo çand û hunera kurdî çi bikira?***

Li welatên pêşketî ji bo pêşketina jiyana kulturî çi pêwîst bûya, minê bixwesta wê bikim!

## Almanya li Hewlêrê navenda bazirganiyê vedike


Dr. Axel Nitschke (Wêne Nicolas Knebel)

*(Ji Rûpela 1)*

Dr. Axel Nitschke berpirsê xebata derve ya DIHK ye ji. Ev dezgeha Almanî ya bazirganî nûneritiya şirketên xwe yên endam li hemberî şaredarî, hikûmetên herêmî, siyaset û raya giştî dike. Li 120 dewletan 80 navendên bazirganî yên Alman hene. Erkê van navendan danîna peywendiyan bi şirketên li wan dewletan û peydakirina bazarê ji bo şirketên Almanî ye. Di sibata îsal de li Bexdayê ji navendeke bazirganî ya Almanî vebû. Ev demek e ji bo di payîza îsal de li Hewlêrê ji navendeke bazirganî vebe, kar tê kirin. Dr. Axel Nitschke dibêje rewşa ewlekariyê ya baş ya herêma Kurdistanê bala şirketên Alman dikşîne.

Hikumet û şirketên Alman dizanin ku rewşa li deverên din ên Îraqê pir xeter e. Ji ber vê yekê şirketa Linde AG karmendên xwe naşîne Îraqê. Dr. Gerhard Beysel menajerê vê şirketê ye. Linde AG şirketeke enerjiyê ye. Ew yek ji mezintirîn şirkeên Almanyayê û bazara wê li seranserî cîhanê pêk tê. Li Îraqê ji alavên vê şirketê hene. Lê ew kevn bûne û ne li gorî dema niha ne. Ji bo ku ew alav bên nûkirin, pêwîstî bi karmendên pispor heye. Lê ji ber ku karmendên Alman ji ber rewşa ewlekariyê naçin Îraqê, Linde AG dixwaze ku karmendên Îraqî bi karbîne. Ji ber vê yekê Linde AG piştgiriya "Îraq Horizons 2015 / Asoyên Îraqê 2015) dike.

Projeya "Îraq Horizons 2015" projeyeke hevbeşa ya hikûmet û şirketên Almanî ye bi hevkariya Dezgeha Goethe re ye. Îsal dora bîst kesên ku li Îraqê xwendina xwe ya zanîngehê bi dawî anîne, ji bo vê projeyê hatin hilbijartin. Nîvê van kesan Kurdê ji Duhok û Hewlêrê ne. Kesên beşdar li Urdun û niha li Almanyayê hînî ziman û çanda Almanî dibin. Ew li ser şirketên beşdar herwiha tên belavkirin da ku bikaribin xebata Almanî ji nêzik ve bişopînin. Dr. Axel Nitschke dibêje ku armanca vê projeyê ew e ku "Îraq ji nêzik ve kalite û zanebûna Almanî nas bike."

Bazirganên Alman bawerdikin ku ew dikarin li Îraqê gelekî qezenc bikin. Sekretêrê balyozxana Îraqê Subhi Berwarî di kombûnekê de ji bo beşdarên projeya "Îraq Horizons 2015" de digot 'derengmayîn ji neqazanckirinê baştir e.'

## Li Tirkiyê Rojeva Kurd

*(Ji Rûpela 1)*

***Ji nivîskar û akademisyenên Tirk û Kurd; Prof. Mehmet Altan û Orhan Miroğlu bi riya Rûdawê tevlî niqaşan bûn:***

**Prof. Mehmet Altan (Nivîskarê Rojnameya Starê):** Heta pirsgirêk li hundir neyê guftûgokirin, li derve tu encamê nade. Hikûmetê bi DTP'ê re nediaxifiya, diçû li Amerîkayê bi biyaniyan re diaxifî û giliyê PKK'ê dikir. Niha ji derve hatin hundir. Pirsgirêk li hundir derketiye û divê li hundir bê çareserkirin. Ne bi biyaniyan re, lê bi gelê xwe re. Bi hevdîtina Erdoğan u Türk re hat fahmkirin ku heta muxatab li hundir neyê dîtin û pirsgirêk li hundir neyê axaftin tu çareserî çênabe. Ev hevdîtin bu gava yekem ji bo çareseriyeke rast. Ez bawer dikim ku muxatab hat dîtin. Divê tiştekî din jî were sererastkirin: Heta îro wek 'pirsgirêka PKK'ê' li mijarê temaşe dikirin. Heger dewlet li ser esasekî rast bihata avakirin, wê ne pirsgirêk derketa û ne jî PKK. Divê bere li pirsgirêkê mêzekin û paşê li PKK'ê. Muxatab jî û navê pirsgirêkê jî 'Kurd' e. Divê dewlet bibe dewleta Kurdan jî. Ji bo ku ev tişt nehatin kirin ev 30 sal e xwîn dirije."

**Orhan Miroğlu (Nivîskarê Tarafê):** Ev pêvajoya ku destpêkiriye netewperestên Tirk hejandiye. Siyaseta nû ku dixwaze di pirsgirêka Kurd de rola çekan ji holê rake û dawiya şer bîne, ji bo CHP û MHP'ê wê bibe sedemê krîzekî. Bahçeli dixwaze di qada siyasetê de rola dewleta kûr bilize. Piştê ku Ergenekon derket meydanê û niha tê darezandin, dewleta kûr û tarî derbeyekî gelek mezin xwar. Niha dewlet dixwaze xwe ji vê cîhê paşve bikişîne. Bahçeli, dibêje 'emê 50 sal şer bikin.' Lê piştî axaftina wî herçend bi milyonan aligirên wî hebin jî, tu kes derneket kolanan. Çima? Ji ber ku di gotinên wî realiteyê nayne ziman. Mirov dikarê gotin û hewldanên wî wek 'hêjandin' binavbike. Herwiha dixwaze aligirên xwe re çend gotinên tûj bêje û dilê wan rehet bike. Dibe ku Baykal û Bahçeli di demên pêş de hin behtir tund bibin. Lê ez bawer nakim ku tiştekî bidestbixin. Jiber ku hêza wan a tevgerê nemaye.

***Doç. Dr. Haluk Gerger, Prof. Dr. Baskın Oran û ji di derbarê mijarê de dîtinên xwe ji Ajansa Dihayê re rawe kirin:***

**Doç. Dr. Haluk Gerger:** Beriya niha Amerika nexşerêyekî xêz kir. Di wê nexşerê de ku dema Obama hat Tirkiyeyê got, 'Emê pirsgirêka li Tirkiyeyê bi muxatabgirtina Kurdên li vir û yên Iraqê ve çareser bikin.' Obama navnîşanê diyar kir. Bi Ahmet Türk re rûnişt. Hevdîtina Erdoğan ya bi DTP'ê re jî bi dîrektîfa Obama pêk hat. Ev gavek e, lê bes nîne. Ev beşeke ji nexşerêya Amerîkayê. Li aliyê din nexşeya Öcalan heye. Ya giring ew e. Divê mirov li bersiva wê binêre, wê dilsoziya wan a ji bo çaresiyê derbixe holê.

**Prof. Dr. Baskın Oran:** Ji domandina şer hin kes debara xwe dikin. Dibe ku ew kes provakasyonan bikin. Ji herdû aliyan jî kesên ku bi şer debara xwe dikin hene. Divê hişyariyê hebe. AKP'ê bi hevdîtina bi DTP'ê re ser şerma xwe ya mezin girt. Muxatab negirtina DTP'ê kêmasiyekî mezin bû. Hevdîtina aliyan kêfxweşî da min. Dema 2 alî hebin wê 2 muxatab jî hebin.

Cîgirê Serokê Koma Civakên Kurdistanê Bozan Tekîn:

## Em jî dixwazin wek Pêşmergeyên Başûr, hêza me ya çekdar hebe

*(Ji Rûpela 1)*

***Nerîna we ya li ser encamên hilbijartinên Başûrê Kurdistanê çiye?***

Herêma Kurdistanê ji sala 2003'an ve rewşeke fermî wergirtiye, lê em dikarin bêjin di ezmûna Desthilata Herêma Kurdistanê de kêmasiyên ciddî hene. Wek mînak rê nedan ku Lîsta Hiwa tevlî hilbijartinan bibe. Ev jî li gor me cihê rexne girtinê ye. Lê bi giştî di derbarê hilbijartinan de em dikarin bêjin gorankariyên mezin çênebûn.

Bi sedema ku bû Serokê Herêma Kurdistanê em Mesûd Barzanî piroz dikin. Herwiha endamên nû yên Parlemenê Kurdistanê jî piroz dikin. Herçiqas axaftinên di derbarê şêwazê hilbijartinan de dirust bûn, lê em hêvîdar in encamên hilbijartinê bibin pêngaveke ber bi nehiştina kêmasiyan û pêşvebirina proseya demokrasiyê li Başûrê Kurdistanê. Herwiha bibe sedemek ji bo yekgirtina Kurd li herçar parçeyên Kurdistan û derveyê welat jî. Em hêvîdar in ew hilbijartin ji bo sazkirina Konferansa Netewî bibe bingehek .

***Lîsta Kurdistanî û YNK li Silêmaniyê xesirîn, hûn lawazbûna YNKê çawa dibînin?***

Di siyaset û xebata civakî de ger mirov lewaz bû, divê ji bo zanîna sedema wê temaşê xwe bike, ne ku derdora xwe. Pêwîst e YNK li sedema lewazbûna xwe vekole û rave bike.

***Peywendiya we bi Lîsta Goran û Noşîrwan Mistefa re çawa ye?***

Heta niha ne nehênî û ne eşkere tu peywendiyeke me bi wan re nebûye. Li Herêma Kurdistanê hinek pirsgirêk hene ku nehatine çareserkirin û gel jî bi pey çareseriyan de digere, ev jî dibe sedema wêya hinek kesayetî û aktorên nû derkevin pêş.

***Hûn derketina Lîsta Goran bi awayekî erênî yan nerênî dibînin?***

Em bi çavê erênî û nerênî berê xwe nadinê. Em wek nerînekê temaşe dikin. Ger ew rû nede û her hêzekî berjewendiya gelê Kurd û yekitiya netewî li herçar parçeyên Kurdistanê biparêze û li ber çav bigre û xizmeta dagirkeran neke, em derketina wê hêzê pozitîf dibînin. Jiber em wek babeteki civakî berê xwe didinê, ne wek kes.

***Berî hilbijartinan, Ajansa Nûçeyan a Firat raporek belav kir ku Fethullah Gülen piştgiriya Lîsta Goran dike, di vê derbarê de hûn çi dibêjin?***

Di vê derbarê de tu agahî û belgeyên me nînin. Ya baş hûn jî ajansê bi xwe bipirsin ka ew agahî ji ku anîne yan bidest ketine.

***Hûn siyaseta Lîsta Goran beramberî welatên derdor çawa dibînin?***

Heta niha helwêst û bernameyên xwe bi eşkere ranegihandine, wek mînak heta niha eşkere nekirine helwêsta wan a li beramberê Tirkiyê çiye. Em di vî warî de ji wan daxwaz dikin ku helwêstên xwe eşkere bikin. Herwiha em dixwazin bizanin nerîna wan a yekitiya Kurd, Konferansa Kurd û çareseriya pirsgirêka Kurd çiye. Van xalan heta niha jî bo me ne zelal in. Ew zêdetir di çarçoveya herêmê de mane. Lê wiha bizanim Mihemed Tofiq Rehim (Endamê Encûmenê Rêvebirina Dezgeha Wişe) vê dawiyê di daxwiyaniyekê de got, divê Hikûmeta Tirkiyê ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd pêngavan bavêje. Em vê yekê wek pêngaveke erênî dibînin. Dema Lîsta Goran wek hêzeke nû bername û siyaseta xwe eşkere kir wê demê emê jî li ser biaxifin.

***Piştî ku Mesûd Barzanî wek Serokê Herêma Kurdistanê hat hilbijartin daxwaziya we jê çiye?***

Em wî piroz dikin û serkeftina wî bi awayekî erênî dibînin ku gel li Başûr bi dengekî bilind xwast û îradeya xwe nîşan da. Em piştivaniya îradeya gel dikin. Em jî Rêzdar Barzanî dixwazin ku di pêşerojê de ji bo yekîtî û çareserkirina pirsgirêka Kurd li herçar parçeyên Kurdistanê roleki erênî bilîze. Divê di dema dahatû de Konferansa Netewî bê sazkirin.


(Wêne Rûdaw)

***Hûn ji bo Konferansa Netewî hatine vexwendin?***

Bê guman bê PKK konferans pêk nayê. Ger pêk were jî mirov nikare navê wê bike Konferansa Netewî. Em hêvîdar in hemû hêz û aliyên serekî yên Kurdistan û kesayetî tevlî wê konferansê bibin. Jiber pirsgirêka Kurd ne tenê kêşeya hizban e, pirsa mileteki ye.

***Öcalan wê di 15'ê tebaxê de ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd nexşerêyekê belav bike. Hûn dikarin behsa xalên girîng ên wê nexşerêyê bikin?***

Nexşerê ji aliyê Serok Apo ve tê belav kirin. Em nikarin tiştekî bêjin. Lê em di wê baweriyê de ne gelek tiştên bicih û maqûl di wê nexşerêyê de bin. Em jî heta dawî piştgiriya wê nexşerê yê dikin.

***Serokê Koma Civakên Kurdistanê Murat Karayılan, di hevpeyvîneke xwe ya vê dawiyê de gotibû; 'PKK li gor destûra 1920'an daxwaza otonomiyê dike.' Gelo ew beşeke ji wê nexşerê ya ku Öcalan eşkere dike?***

Rast e Serok û Heval Murat Karayılan gotin qanûn û destûra sala 1920'an wek bingeheki ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd liber çav digrin. Jiber di wê destûrê de behsa redkirina Kurd nehatiye kirin. Herwiha neteweyekî ji nexistiye pêş. Wek mînak niha navê parlamena Tirkiyê, Civata Niştimanî ya Mezin a Tirkiyeyê (TBMM) ye, lê wê demê Civata Niştimanî ya Mezin bû û navê Tirkiyê tê de nebû. Daxwaza me serokê azad, nasnameya azad û çareseriya demokratîk e.

***Çarçoveya wê otonomiya ku hûn daxwaz dikin çiye?***

Wek di zanistên siyasî de jî tê diyar kirin çarçoveya wê ew e ku gelek di nav xwe de çand, nasname û aboriya wî di destê wî de be û xwediyê parlamen, hikûmet û ala taybetî ya xwe be. Lê ew daxwazî ji aliyê Tirkiyê ve çawa tên cîbicîh kirin, ew jî gotûbêj li ser tê kirin. Wek mînak em dikarin modêla Scotland bibînin. Herwiha modêla Bask li Îspanya ku parlamen û ala wê ya taybet heye û karûbarê çandî û aborî ya xwe birêve dibe. Em dikarin sûd jî wan modelên desthilatdariyê werbigrin. Niha di nav rewşenbîrên Tirkiyê de jî gotûbêj li ser wan babetan tên kirin.

***Ji bo çareserkirina pirsgirêka Bakurê Kurdistanê hûn wek modêl berê xwe nadin Herêma Kurdistanê jî?***

Bê guman emê sûd jî wê ezmûnê jî wergirin. Wek mînak pêşmergeyên Başûr hene, divê hezeke me jî ya parêzvanî nebe.

***Ango hûn jî dixwazin bi heman şêwazê desthilata Başûr xwedî hêza pêşmerge bin?***

Bê guman. Desthilatekî bê hêzeke parastinê nabe. Mafê me yê xwezayî ye wê daxwazê bikin. Lê wek min got ew babetên gotûbêjê ne. Lê ya serekî divê Serok azad be, nasnama Kurd azad be û çareseriyeke demokratîk ji pirsgirêka Kurd re hebe.

***Ji bo nexşerê ya xwe Öcalan, daxwaz ji PDK û YNKê jî kiribû pêşniyarên xwe bêjin, di vê derbarê de hîç bersivekî heye?***

Rast e daxwaza pêşniyar û raya PDK, YNK'ê, Rêzdar Barzanî û Talabanî, jimareyek rewşenbîr û aliyên Kurd û Tirk hatiye kirin, di vî warî de em bi giringî berê xwe didin nerînên PDK û YNKê. Lê heta niha bi awayekî fermî hîç bersivek tune. Lê Rêzdar Mesûd Barzanî dibêje, 'ew pirsgirêk bi riya şer çareser nabe.' Em vêna wek peyamek ji bo Dewleta Tirkiyê dibînin.

***Öcalan dibêje 'ger Dewleta Tirkiyê bersiveke pozîtîf nede ez nexşerê ya xwe vedikişînim û bêalî dibim.' Mebest ji vê çiye?***

Serok Apo ji sala 1993'an ve daxwaz dike pirsgirêka Kurd bi aştî bê çareserkirin. Dewleta Tirkiyê berê digot Kurd nînin, lê ji sala 1990'an ve dibêje Kurd hene. Ger ne bi awayekî fermî û qanûnî jî be, lê Tirkiyê îtiraf bi hebûna Kurd kiriye. Niha gelek partî û rewşenbîrên Tirk bahsa çareseriya pirsgirêka Kurd dikin, Serok Apo jî ji bo wan gotûbêjan ber bi pêş de bibe nexşerê belav dike. Me 5 caran agirbest îlan kir û ya niha şeşem e. Lê ger em nexşerê ji bo çareseriya pirsgirêkê pêşkêş bikin û siyaseta inkarê jî berdewam be û êrîş berdewam bin êdî mirov çi dike? Mebesta Serok û ya me jî ew e ku heta dawî em bi çareseriya aştî û siyasî re ne. Lê ger Dewleta Tirkiyê careke din êrîşî me bike û nexşerê ya Serok Apo red bike, wê demê emê li ser parastin û berxwedanê berdewam bin. Lewra em jî bo parastina xwe amadekariyan dikin.

***Gelo em dikarin wan axaftinên Öcalan wek tehdîdekî bibînin?***

Ne wek tehdît, mebest ew e bila siyaseta înkarkirina Kurd nemîne û em operasyon çareseriya aştiyane ber bi pêş ve here. Niha du rê li pêşiya Dewleta Tirkiyê ne, yan bi aştiyane pirsgirêkê çareser bike yan dirêjî bi şer bide. Ya em niha dibînin ew e; Tirkiye ne aştiyê dike û ne şer. Dixwaze dem biborîne. Em jî vê qebul nakin.

***Dawî Erdoğan û Ahmet Türk jî bi hev re rûniştin. Hûn bawer dikin AKP pirsgirêka Kurd çareser bike?***

Baweriya me bi me, bi gelê me û aştixwazan heye. Di vê navberê de AKP neçar e wan pêngavan bavêje û pirsgirêkê çareser bike. Ya rastî baştir e em bêjin Hikûmeta Tirkiyeyê ne ku AKP. Niha hikûmet dibêje 'em amade ne pirsgirêkê çareser bikin,' em jî dibêjin 'fermo bike.' Em jî aliyê xwe ve jî bo çareserkirina pirsgirêka Kurd zeminê xweş dikin. Wek mînak di 13'ê Nîsana 2009'an de me agirbest îlan kir û heta 1'ê Ilonê hat dirêjkirin. Lewra em proseya çareseriya aştiyane ber bi pêş ve dibîn û ew derfetan me avakiriye. Niha tu asteng li pêşiya Hikûmeta Tirkiyê tune jî bo pirsgirêka Kurd çareser neke. Tenê wek CHP û MHP hinek partî li dijî çareseriyê ne. Lê divê hikûmeta Erdoğan ji bo çareserkirina pirsgirêkê û aştiyê wan rîskan qebul bike û aştiyê neke qurbana çend dengan. Eger pirsgirêk çareser nebe û careke din şer destpêbike, rewş pir dijwartir dibe. Lewra pêwîst e Hikûmeta Erdoğan di çareserkirina pirsgirêka Kurd de pir ciddî be. Ew dibêjin 'emê bê gotûbêja bi Öcalan re pirsgirêkê çareser bikin.' Lê çawa bê Mandela aştî çênebû, bê Serok Apo jî aştî nabe.

***Ger heta 01.09.2009'an Dewleta Tirkiyeyê ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd hîç pêngaveke erênî neavêje hûn amade ne careke din agirbestê dirêj bikin?***

Wê demê emê biryar bidin ka çi dikin, lê em eşkere dibêjin ger Dewleta Tirk nexşerê piştguh bixe û dirêjî bi operasyonên xwe bide, emê berevaniyê li xwe bikin. Em dilsozê aştiyê ne. Ji bo çareseriya aştiyane em jî dil amade ne. Lê ger êrîşan binin ser me, emê heta dawiyê berevaniyê li xwe bikin.

# Bill Clinton zilamê misyonê giran e



**Serwîsa Cîhanê** – Bi navbeynkariya kevneserokê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) Bill Clinton du rojnamevanên jin yên Amerîkî ku li Koreya Bakur girtî bûn, serbest hatin berdan. Navbeynkariya Bill Clinton ji aliyekî ve bû sedema kêfxweşiyê û hinek çavdêrên siyasî vê gava Clinton wekî gavekî erênî ji bo têkiliyên DYA'yê û Koreya Bakur nirxandin, li aliyê din jî hinek aliyên siyasî hewldana Bill Clinton wekî mezinkirina Koreya Bakur binavdikin.

Bi navbeynkariya kevneserokê DYA'yê Bill Clinton hefteya borî herdû rojnamevanên jin yên Amerîkî Euna Lee û Laura Ling piştî şeş mehan di girtîgehên Koreya Bakur de serbest hatibûn berdan. Clinton ligel çend dîplomatên Amerîkî sêşema borî çûbû Koreya Bakur û piştî civînekî sê demjimêran di navbera wî û Serokê Koreya Bakur Kim Jong Il de herdû rojnamevan serbest hatibûn berdan. Herdû rojnamevanên jin di nîvê meha adarê de, dema ku xwestibûn li ser rewşa penaberên li ser sinorê Koreya Bakur û Çînê raporteki çekîn, ji aliyê hêzên Koreyî hatibûn binçavkirin û 12 sal cezayê karê giran li wan hatibû birîn.

Li gor çavdêrên siyasî azadkirina herdû rojnamevanên Amerîkî dikarê rêyekî ji bo diyaloga dualî di navbera DYA'yê û Koreya Bakur de vekê. Çavdêr dibêjin ku bi vê hewldana Clinton ji aliyekî ve kanalên dialogê di navbera herdû welatan de dikarin vebin û ji aliyê din ve Hikûmeta DYA'yê dikarê li ber çavê raya giştî pozisyona xwe ya hişk li dijî Koreya Bakur biparêzê.

Hikûmeta Obama daxuyand ku hewldana Clinton karekî şeqsî bû û tu misyonekî wî ya fermî tunebû û wê tu geherîn di pozisyona hişk ya DYA'yê li hemberî Koreya Bakur de çênebê. Hikûmetê got ku ji bo serbestberdana herdû jinan tu soz ji bo Koreya Bakur nehatine dayîn. Wezîra Derve ya DYA'yê û hevjîna Bill Clinton, Hillary Clinton ku hefteya borî derketibû gera xwe ya hinek welatên Afrîkayê, li paytexta Kenya Nairobiyê got, ku tu pêwendî di navbera azadkirina herdû jinan û Bernameya Atomî ya wî welatî de nîne û wiha got: "Ez dixwazim ku herkes zanibê, tiştê ku Bill kiriye, karekî şeqsî bû." Obama ji bang li rejîma komûnîst ya Pyongyangê kir, ku dawî li bernameya xwe ya atomî bînê û got ku ev baştirîn rê ye ji bo başkirina pêwendiyên herdû welatan. Berdevkê Wezareta



Derve ya DYA'yê Robert Wood got ku divê Koreya Bakur di meseleya bernameya wî welatî ya atomî de vegerê ser maseyê. Koreya Bakur di van çend mehên borî de bi çeribandina çend rokêtên mesafdirêj û yên atomî hêrsa civaka navnetewî kişandibû ser xwe û di avrêla îsal de dawî li danûstendinên şeşalî yên bi Çîn, Japonya, Rûsya, Koreya Başûr û DYA'yê li ser bernameya xwe ya atomî anîbû.

Dijbêrên vê hewldana Clinton dibêjên ku wî bi vê serdana xwe mesrûiyetêkî ku rejîma Koreya Bakur ne layîqe, daye wî welatî û DYA'yê li pêş desthilata wî welatî ketiya ser çokan. Wêkî din dijberê misyona Clinton gûmanên xwe tînin ziman, ku ev gava Clinton dikarê rê ji welatên din yên dijberê DYA'yê re vekê ku bi heman awayî tevbigerin û wekî nimûne jî hersê çiyakêşên Amerîkî Joshua Fattal, Sarah Shourd û Shane Bauer, ku beriya çend rojan li ser sînorê Başûr û Rojhilatê Kurdistanê ji aliyê hêzên ewlekariyê yên Îranê ve hatibûn girtin, nişan didin. Pirs niha ewe, ka Îran wê piştî vê misyona Bill Clinton ya ji bo azadkirina herdû jinên rojnamevan çawa tevbigere.

# Rêbirî stûna aboriya Somalyayê ye

**Serwîsa Cîhanê** – Somalya ku yek ji welatê herî xizan û têkçûyî yê cîhanê ye, piranî bi nûçeyên xerab dikevê rojeva cîhanê. Li wî welatê ku tenê beşekî biçûk ji aliyê hikûmeta navendî tê kontrolkirin rêbiriya deryayî buye yek ji ticaretên herî bi qezanc. Herî dawî rêbiran ji fîrmayekî Almanî bi milyonan Euro berdêla serbestberdana gemiyekî wan stendin.

Rêbiran Somalî roja 4'ê avrêla îsal 650 km ji kenara Somaliyayê dûr gemiya baran ya Almanî bi navê Hansa Stavanger tevî 24 kesên karkerên gemiyê rehîn girtibûn û hefteya borî piştî danûstendinên bi mehan gemî terk kiribûn. Li gor daxuyaniyên rêbiran beriya ku ew gemiyê biterkînin, wan ji xwediyê gemiyê, ji fîrmaya Almanî Hamburger Reederei Leonhardt & Blumberg 2,1 milyon Euro wergirtine.

Li gor Serokê Bîroya Veguhestina Deryayî ya Navnetewî IMB Pottengal Mukundan, kenara Somalyayê rêava hêrî bi tehlûkeye li cîhanê: "Rêbir li wêderê çi dixwazin dikin û piraniya caran bêyî ku li dijî wan tutişt bê kirin jî diçin." Piraniya êrişan li dijî gemiyên ku neftê veguhezin pêk tên. Ji rêbendana îsal ve li Kendava Adenê êrişî 130 gemiyan hatiye kirin. Ji bo azadkirina wan gemiyan rêbiran pereyekî mezin xwestine û stendine jî. Li gor îhtimalên zanayên bi rêbirî re mijûl, sala borî derdorê 100 milyon Dolar bi rêbiriyê hatiye xezenckirin.

Ciheki din yê bi tehlûke kenara Nîjeryayê ye. Li gor daxuyaniyên IMB di mehên avrêl heta pûşpêr ji Nijjeryayê 13 bûyer ji wan re hatin ragihandin û 24 êrişên ku ji navenda wan re negatin ragihandin hatin tomarkirin. Li gor raporta IMB di nîvsala yekê ya îsal de li gor sal borîhejmara êrişên rebirên ser deryayê duqat bûne. Hejmara êrişan ji 114 bû 240. Sedema bilindbûna vê hejmarê bi êrîşên li Kendava Adenê (86 buyer) û li yên li kenara Somalyayê (44 bûyer) ne.

Şarezayê ewlekariyê yê Almanî Hans-Peter Uhl ji rojnameya Almanî Neue Osnabrücker Zeitung re got, ku dayîna peran ji rêbiran tê wateya dawetkirina rehîngirtina gemiyên din: "Metirsiya ji bo gemiyên Almanî li şûna ku biçûk bibe, mezintir dibe." Uhl daxwaz kir ku li şûna azadkirina rêhinan bi dayîna peran, li dijî rêbiran bê têkoşîn. Li gor Uhl divê gemiyên ku rehîn tên girtin, dîsa bê azadkirin, eger pêwist bê bi darê zorê jî.

Li gor Wezîrê Masîgirî yê Somalyayê Abdulrahman Ibrahim pirsgirêka rêbiran ne li ser deryayê, lê li ser erdê divê werê çareserkirin: „Rêya herî baş ji bo xelasbûna ji rêbiran alîkariya hikûmeta Somalyayê ye. Rêbir ne ji deryayê tên, lê ji erdê Somalyayê. Beriya ku mirov li ser deryayê li dijî rêbiriyê têbikoşê, divê destpêkê li ser erdê şere wan bê kirin." Tênê beşekî biçûk ji axa Somalyayê ji alîyê hikûmetê tê kontrolkirin, beşê herî mezin ji aliyê eşîrên herêmê û komên Îslamîst yên wekî "Al Şabaab" û Hisb Al Islam" tê kontrolkirin. Piraniya gelê Somalyayê di belengaziyekî mezin de dijî û betirî 3 milyon Somalî bi birçîbûne rûbirû ne û sala borî zêdetirî 6000 kesî hatin kuştin.



Wekî tê bahskirin, rêbiriya li kenarê Somalyayê ne ji aliyên çend kesên ku bi serê xwe tevdigerîin tê kirin, lê li paş vî karî serokên hinek eşîrên Somalî ku têkiliyên wan heta nava hikûmetê jî diçin, hene. Tê gotin kesên ku vî karî dimeşînin kesên xwedî bandorin û ji Ewrûpa, Amerîka û ji Nîvgirava Erebistanê tevdigerin. Ew kesên xwedî gelek têkilî û dewlemendin.

Civaka navnetewî jî êdî têgihiştiye, ku pirsgirêka rêbiriyê bi hêza leşkerî tenê nayê çareserkirin. Di avrêla borî de di konferansekî ji bo alîkariya Somalyayê welatên beşdar soza alîkariya 200 milyon Dolarî dan hikûmata Somalyayê. Li gor sekretêrê Neteweyên Yekbûyî Ban Ki Moon rêbiriya li ser deryayan synonîma Anarşî û bêaramiya li welatekî ye.

Sîgorta û fîrmayên parastinê jî ketina nava bazarê û xezencekî baş bidestdixin.

# Rojava li 'Talîbanên nerm' digere

**Serwîsa Cîhanê** – Du heftiya beriya hilbijartinen Serokatiyê li Afxanîstanê rewşa aramiyê di astekî metirsîdar deye û herku diçe xerabtir dibe. Dengên ku dixwazin bi hêzên Talîbanan re biaxifin jî zêde dibin.

Herçiqas niha bêtirî 65 hezar leşkerên Hêza Navnetewî ya Ewlekariyê ISAF'ê li Afxanîstanê hatine bicihkirin û herroj operasyonên leşkerî li dijî çekdarên Talîbana tên meşandin jî, lê rewşa aramiyê îsal ji hemû salên borî xerabtir buye. Tenê di heft mehên borî li Afxanîstanê 250 leşkerên hêza ISAF'ê hatin kuştin û şervanên Talîbanan êdî bi rokêtan êrişî paytexta Afxanîstanê Kabîlê jî dikin.



Ji ber vê rewşa xerab berpirsên rojavayî jî di nav lêgerîneke dene, ka çawa ew dikarin xwe bi rûyekî spî ji Afxanîstanê xelas bikin û hejmara kesên ku dixwazin bi Talîban re danûstendin bên kirin jî zêde dibin. Yek ji wan Sekreterê nû yê bihêztirîn hevgirtina leşkerî li cîhanê NATO'yê ye. Kevneserokwezîrê Danîmarkayê Anders Fogh Rasmussen di 1'ê tîrmaha borî de dest bi karê xwe kir û di axaftina xwe ya destpêkirina kar de got, ku ew alîgirê danûstendinan ligel rêxistina Talîban li Afxanîstanê ye. Di hevpeyvîna ligel rojnameya Danîmarkî Politiken Rasmussen wiha axifî: „Di nava Talîbanan de hinek Grûb hene, ku mirov di dema lêgerîna li lihevhatinê dikarê bi wan re biaxifê." Lê Rasmussen bibîranî, ku di nava Talîbanan beşekî radîkal jî heye, ku tenê ji hêza leşkerî fam dike û bi wan re tu danûstendin ne mumkun e.

Bi vê daxuyaniya xwe Rasmussen jî dikevê rêza wan kesan, ku danûstendinan bi Grûbên nerm yên di nav Talîbanan de dixwazin. Beriya Rasmussen Wezîrê Derve yê Brîtanyayê David Miliband jî piştî operasyona vê havînê ya NATO'yê li başûrê Afxanîstanê daxwaza danûstadinan anîbû ziman. Ji ber hejmara zêde ya leşkerên Brîtanî ku tên kuştin, raya giştî li wî welatî zextekî mezin li ser hikûmetê dike, ku çareseriyekê ji bo pirsa Afxanîstanê bibînê.

Welatekî din yê rojavayî ku gihiştiyê wê baweriyê ku bêyî Talîbanan li Afxanîstanê aşîtî pêk nayê, Franya ye. Di hevpeyvînekî Wezîrê Derve yê Fransayê Bernard Kouchner bi rojname "Le Figaro" Kouchner jî daxuyand ku ji bo aşîtiyeke li Afxanîstanê pêwistiya wan bi danûstendinên ligel Talîbanan heye: "Helbet divê em bi Talîbanan re biaxifin, bêgûman bi yên ku amade ne çekên xwe deynin û dixwazin biaxifin. Kouchner got ku heta niha di asta lokal de hewl tê dayîn ku bi Talîbanan re têkilî bên danîn, lê wî welatên rojavayî hişyar kir ku bi awayekî hevdengî tevbigerin û çalakiyên xwe koordîne bikin: "Ev mîsyonekî Neteweyên Yekbûyî ye û tişta herî xirab ewe, ku heryek bi sere xwe tevbigerê." Li gor agahiyên Kouchner heta niha bi alîkariya Afxanîstanê carekê hewl hatiye dayîn ku bi Talîbanan re danûstendinan bikin, lê ew danûstendinên ku li Erebistana Siûdî hatin meşandin ne serkeftî bûn. Li gor nêrîna wezîrê Fransî du cûreyên Talîbanan hene: Ewên ku dikarin tevlî hikûmetekî meşrû werin kirin û Talîbanên hevalbendê Cîhadê (Şerê pîroz), ku tu daxwaza wan ji bo danûstendinan tune.

**Hejmara leşkerên kuştî yên ISAF'ê**

| Sal | DYA | Yên din | Hemî |
|---|---|---|---|
| 2009 | 142 | 108 | 250 |
| 2008 | 155 | 139 | 294 |
| 2007 | 117 | 115 | 232 |
| 2006 | 98 | 93 | 191 |
| 2005 | 99 | 32 | 131 |
| 2004 | 52 | 7 | 59 |
| 2003 | 48 | 9 | 57 |
| 2002 | 49 | 20 | 69 |
| 2001 | 12 | 0 | 12 |
| Hemî | 772 | 523 | 1295 |

Çavkanî: http://icasualties.org/

## Li Kalîforniya di zindanan de cîh nema:

# 40 hezar girtî serbest in

**Serwîsa Cîhanê** – Girtîgehên Kalîforniyayê tijî ne. Ji ber ku cih di girtîgehên wî welatê DYA'yê de nînê, zêdeyî kapazîteya gîrtîgehan gîrtî li wan tên bicihkirin. Ji ber rewşa wan ya xirab, du girtiyan doz li dijî hikûmeta Kalîforniyayê vekirin û dadgehê ew mafdar dîtin.

Dadgeheki Dewletê li Kalîforniyayê biryar da ku di nava du salan de divê hejmara girtiyan bi qasî 40 hezarî bê kêm kirin. Dadgehê 45 roj wext da hikûmeta Kaliforniyayê ku pîlanekî ji bo daxistina hejmara girtiyên xwe ji niha 150 hezarî bo 110 hezaran pêşkeş bike. Di biryara dadgeha de hatiye gotin ku ji ber zêdebicihkirina girtiyan mafên wan yên bingehîn tên binpêkirin û ew rewş dibê sedema şîdetê jî. Di girtîgehên dewletê de cih ji bo 84 hezar girtiyan heye, lê ji ber tunebûna cîh gelek girtî di salonên werzişê û cihên ne minasib hatine bicihkirin.



Dadgehê herwiha daxwaz kir, ku divê bicihkirina girtiyên ji aliyê fîzîkî û ramanî nexweş jî bê başkirin. Wekî din di biryara dadgehê de hatiye gotin, herçiqas bi milyaran Dolar ji bo girtîgehan tên xerckirin jî, lê dîsa ji ber xerabbûna rewşa tendurustiyê xwekujî û kuştin di girtigehan de diqewimin. Li gor dadgehê 33 girtîgehên Kaliforniyayê ji ber zêdebûna girtiyan êdî nikarin werin rêvebirin. Beriya vê jî dadgehên din yên dewletê biryar dabûn ku mafên girtiyan yên bingehîn tên binpêkirin

Wezîrê pêwendîdar Matthew Cate di vê derbarê de daxuyand ku parêzgarê Kalîforniyayê Arnold Schwarzenegger wê biryara dadgehê îtiraz bike, ji ber ku dadgehê sînorê xwe derbas kirine. Li gor Cate ewyek raste, ku di girtigehan de zêdeyî kapazîteya girtîgehan girtî hatine bicihkirin, lê rewşa girtiyan di van salên borî de baştir buye.

Wekî din qeyrana aborî û valabûna xezîneyên Kalîforniyayê jî bandorê li ser guftûgoyên di derbarê cezakirina sûcdaran û awayê bicihkirina wan dike û azadkirina girtiyên ku sûcên giran nekirine jî tê guftûgo kirin. Li gor minaqeşeyan, girtiyên ku ji girtîgehan derkevin dikarin bi 'qedexeya derketina ji malê' jî cezayê xwe li mala xwe bidomînin. Kesên ku ji ber derbaskirina nefermî ya sînoran jî di girtîgehan dene, dikarin ji welatên wan re bên şandin.

# 'Almanya Kurdan dişînê girtîgehên Sûriyê'




**Hannover ( Rûdaw) –** Ji 14'ê tîrmeha 2008'an ve, roja ku Peymana Berlînê di navbera wezîrên karên navxwe yên Sûriyê û Almanyayê de hat mohrkirin, Kurdên penaber yên ji Rojavayê Kurdistanê ku li Almanya dijîn, ketin rewşekî xerab. Peymana Berlînê rê li ber dersînorkirina hejmarekî mezin penaberên Kurd vekiriye.

Di peymanê de herdû dewletan li hev kirine ku 7000 welatiyên Sûriyeyê, ku li Almanyayê mafê penaberiyê bidestnexistine, vegerînin Sûriyê. Van rojan ew peyman dikeve qonaxa pêkanînê. Mexdûrên pêşîn yên peymanê jî diyardibin. Yek ji wana jineke Ezîdî ya ducanî bi navê Ebda Horan e. Di nav penaberan de hinek malbatên ku zarokên wan li Almanyayê mezin bûne jî hene. Ji ber ku ev yek bala çapemeniya Alman jî kişand, mijar di medyaya Alman de jî bû sedemê nîqaşan. Di 28'ê tîrmeha borî de rojnamevana Alman Ute Eickenbusch di malpera nûçeyan 'Der Westen' de bal kişandibû ser malbata Delef ku ji bajarê Herne dijîn û di bin xetera vegerandina Sûriyê de ne. Li wî bajarî du Kurdên bi navê Muhsin Hisên û Mistefa Nesan bi armanca dersînorkirinê ji aliyê polîsên Alman ve hatibûn girtin. Yek ji wan hat berdan û yê din heta niha girtî ye.

Li dijî peymanê û hevkariya dewleta Almanya bi rejima Sûriyêyê re, herweha ji bo protestokirina kirinên polîsên Alman yên li dijî penaberên Kurd, hin rêxistinên Kurd yên sivîl jî ketin nav tevgerê. Li Hannoverê endamên Mala Êzîdiyan li Oldenburgê li pêşiya avahiya Wezareta Karê Navxwe ya Parêzgeha Niedersachsenê xwepêşandanekî lidarxistin. Di xwepêşandanê de wêneyên Ebda Horan hatin bilindkirin û sloganên protestoyî hatin qîrîn. Wekî din jî Komîta Karê Hevbeş ya Kurdên Sûriyê li Almanyayê û Navenda Kurdî ya Lêkolînên Qanûnî (Yasa) bang li Kurdên Almanyayê kirin ku di xwepêşandaneke protestoyê li bajarê Herne – ku 10'ê vê mehê hat lidarxistin – de amade bin û doza rawestandina vegerandina penaberên Kurd bikin.

# "Li Danîmarka kes ji rojnameyan bawer nake!"


(Wêne: Rûdaw)

**Deştî Sebah**

**Hewlêr (Rûdaw) –** Di çend rojên borî de çend siyasetmedarên Kurd ku hem li Kurdistanê û hem jî li Danîmarkayê meaş werdigirin hatin rojeva medya wî welatî û bi gendelî û nedana bacê tên tewanbarkirin.

Meselê bi hevpeyvîneke Belên Ebdulla yê endamê Parlamentotoya Kurdistanê ya Rojnameya Exstra Bladet a Danîmarkî destpêkir. Di hevpeyvînê de Belên dibêje ku ew mehane 5 milyon dînarên Îraqê werdigre. Li gor yasayên Danîmarkî, ew kesên ku nasnameya wan a Danîmarkî heye û bi fermî navnîşanê wan li Danîmarka ye, ger dahateke wan a din hebe, divê bacê bidin dewletê. Di vê derbarê de rojnameya Exstra Bladet wiha nivîsiye: "Lê belê wan Îraqiyan agahî nedane şaredarî û rêveberiya bacê. Ev jî binpêkirina yasaya Danîmarka ye." Di derbarê wê nûçeya ku li ser wî jî hatiye belavkirin Belên wiha dibêje: "Li Danîmarka kes ji rojnameyan bawer nake, ji belgeyan bawer dikin. Ger ez derketibim derveyê qanûnê divê li dijî min lêpirsîn vebikin."

Belên li ser sûcdarkirinan xwe diparêzê û dibejê ku wî tu yasa binpênekirine: "Ew meaşê ku min wek endamê parlamento standiye, li gor sîstema hizba me nakevin berîka min. Ew ji bo projeyan tên xerckirin. Tiştê min wergirtiye ji bo kirya xanî, heqê bilêtan, xerciya projeyan, pereyên benzîn, mesrefa mêvan û girtina salonan bûye. Hemû dokument jî di destê min de hene." Li gor agahiyên Belên, eger kesekî li Danîmarka xanenişîn be, dikare li welatekî din jî bijî û pereyên xanenişîna xwe ji Danîmarkayê verbigre.

Bi heman sûcdarkirinan navê Parlamenterê Kurd yê Parlamentoya Îraqê Samî Ezîz Mihemed û Endamê Parlamentoya Kurdistan Telet Xidir jî di medya Danîmarkî de derbas dibin. Ew jî tên sûcdarkirin ku meaşê wan li Kurdistan û Îraqê heye û pereyên sosyal û meaşê xanenişînî jî ji Danîmarkayê werdigrin, ev jî berevajî yasayên wî welatî ne.

Almanya:

# Çekfiroşê gendel hat girtin


(Wêne: Daylife)

**Köln (Rûdaw)** – Skandalekî herî mezin di dîroka siyasî ya Almanyayê di van rojan de bi dawî hat. Lobîstê çekan Karlheinz Schreiber yê ku ev deh sale Almanya hewl didê ku ew ji aliyê Kanadayê ve bê radestkirin, hefteya borî gihîşt Almanyayê û dadgeha bajarê Augsburgê doz li dijî wî vekir.

Di salên heştêyî û nodî de Schreiber kesekî di nav siyaseta Almanya û bi taybetî herdû partiyên Almanî yên muhafezekarxirîstiyan CDU û CSU de zîrek û xwedî bandor bû. Heta ku Schreiberê niha 75 salî ji partiyê hat avêtina, ew endamê CSU û hevalê serokê wê partiyê Franz Josef Strauß bû. Schreiber lobîistekî xwedî bandor bû û tê îdiakirin ku wî bi milyona Mark bertîl daye derdorên siyasî û aborî. Heta kesên ji îstixbarata Almanî BND jî Schreiber kişand nav karê xwe.

Bi alîkariya Franz Josef Strauß têkiliyên Karlheinz Schreiber bi gelek derdorên wekî Erebên Siûdî û fîrmaya Almanî Thyssen re çêbûn û Schreiber bû wekîlê wê fîrmayê li Kanadayê. Bi navbeynkariya Schreiber fîrmaya Thyssenê bi nirxê 480 milyon Mark panzêr firotin Erebên Siûdî, 200 milyonên wan ji bo dayîna ruşwetê hatibûn bikaranîn. Fîrma Airbus jî ku bi navbeynkariya Schreiber çendîn balafirên xwe firotin Kanada û Taylandê, 25 milyon Euro dan Schreiber û ew pere di kontoyên reş li Swîsreyê hatin wendakirin.

Schreiber bi gelek pinpêkirinan tê sûcdarkirin: Nedana bacê, rişwetdayînê, bikaranîna kontoyên reş, rişwetdayina kesên di postên fermî de, bazirganiya çekan, firotina helîkoptêr û balafirên fîrmaya Airbusê. Wê demê Serokê Lijneya Rêvebir ya Airbusê Franz Josef Strauß yê serokê CSU bû û kesên ku sûd ji van têkiliyan werdigirtin kurê Franz Josef Strauß, Max Strauß û Schreiber bixwe bûn.

Dema ku dozgeriya bajarê Augsburga Almanyayê ji ber gûmana nedana bacê sala 1995'an di derbarê Schreiber de dest bi lêkolînan kir, derket orte ku ew karên lobîtiya çekan jî dike û pereyekî mezin ji bo vêyekê wekî ruşwet bikartînê. Schreiber ji ber tirsa girtinê ji Almanyayê reviya û destpêkê çû Swisreyê û paşê derbasî Kanadayê bû. Ji sala 1996'an û virve Schreiber û dadweriya Kanadayê li berhev didin û di dawiyê de Kanadayê ew dersînor kir û radestî Almanyayê kir.

Beriya ku Schreiber hate radestkirin, wî kevneserokê Kanadayê Brian Mulroney sûcdar dikir, ku wî di dema serokwezîriyê de ji bo fîrmayekî panzêran ruşwet xwariye. Herçiqas îdiayên Schreiber hatin lêkolînkirin jî, lê heta dawiyê tiştekî ronî derneket ortê.

Îtirafên Schreiber di salên borî de bûn sedema wê yekê jî, ku çendîn kesên navdar ji postên xwe îstifa bikin, wekî serokê CDU yê wê demê û Wezîrê Hundir yê Almanya yê niha Wolfgang Schäuble. Bi îdiaya ku wî 100 hezar Mark ji Schreiber wergirtiye, Schäuble di sala 2000'an de mecbûr mabû ku ji karê xwe îstifa bike. Piştî paşvekişana Schäuble rê ji bo Serokwezîra niha ya Almanyaye Angela Merkel vebû. Herwiha Serokwezîrê bêrê yê Almanya Helmut Kohl jî ji ber îtirafên Schreiber mecbûr mabû, ku serokatiya rûmetê ya partiya CDU'yê deynê. Hêta niha jî Helmut Kohl negotiye bê ka wî çi bi 2,1 milyon Markên ku wi ji Schreiber wergirtin – Kohl ev tişt qebûl jî kir – kiriye. Kohl di îfadeyên xwe de got ku wî ji wan kesên ku pere dane wî re soz dayê, ku ewê navê wan eşkere nekê.

Lê kiryarên ku Schreiber ji ber wan niha tê dadgehkirin ne karê wî yê ticaretê û ruşwetdayinê, lê ji ber nedana bacê ye. Dema ku Schreiber ruşwet li derûdorên siyasî û aborî belav dikir, ruşwet karekî neqanûnî nedihat hesibandin. Herçiqasi Schreiber ruşwet dabê gelek derdoran û hinek kes li bendê ne ku ewê di parastinên xwe de hinek kesên naskirî bikşînê nava dozê jî, lê tê çaverêkirin ku Schreiber wê hewl bide ku doza wî di çapemeniyê de zêde deng venedê û bi vî awayî bi cezayekî biçûk jê xelas bibe. Ji ber kiryarên wî tê çeverêkirin ku ew bikevê girtîgeh, lê ne 15 salên ku ji bo sûcên bi wî awayî dikarê bê birîn.

Yûnanistan:

# Penaberekî Kurd bi îşkenceya polîs hat kuştin



**Atîna (Rûdaw)** - Rewşa gelek penaberên ku di bin şertên giran de xwe dighînên welatên Ewrûpayê di metirsiyê de ye. Ji bilî rewşa wan ya bicîhkirinê ya xerab, ew rastî êrişên polîsan jî tên. Herî dawî penaberekî Kurd ku di qampekî penaberan li Yûnanistanê ji aliyê polîsên wî welatî ve rastî îşkenceyê hatibû, ji ber birînên giran jiyana xwe ji dest da.

Penaberê Kurd yê ji Başûrê Kurdistanê Arivan Abdullah Osman ê 29 salî di 27'ê tîrmeha 2009'an ji ber îşkenceya ku lê hatî kirin jiyana xwe ji dest da. Arivan di 3'ê avrêla îsal de ji aliyê polîsên Yûnanî li Igoumenitsa hatibû binçavkirin, rastî îşkenceyê hatibû û bi giranî birîndarbûbû. Li gor şahidan polîsan çend caran serê Ariva=n li erdê xistin û ew ji ber birînên xwe ji hiş ketibû û paşê hatibû emeliyatkirin.

Komîteya Dijî Îşkenceyê ya Konseya Ewrûpayê bûyera Arivan şermezar kir û di vê derbarê de jî rayedarên Yûnanî lêpirsîn xwestin. Li gor Konseya Ewrûpayê, Yûnanistan gelek car penaberan bi dizî dişînê Tirkiyeyê û ev yen Konvensiyona Penaberan ya Genfê binpê dike.

Muameleyên xerab yên polîsên Yûnanistanê hiştin ku rêxistinên mafê mirovan jî bikevin fikaran. Gelek caran penaberên ku digîjin Yûnanistanê gazinên xwe di derbarê muameleyên polîsên Yûnanî ji rêxistinên mafên mirovan re tînin ziman. Di derbarê rewşa kambax ya penaberan beriya demekî Komîteya Dijî Îşkenceyê ya Konseya Ewrûpayê raportekî amade kiribû. Di raportê de êrişên polîsên Yûnanî li ser penaberan bi tundî hetiya şermezarkirin û lêpirsîn di derbarê sûcdaran de tê xwestin. Di raportê de hatiye gotin ku gelek penaberên ku digîjin Yûnanistanê bi hefteyan di bin çavan de tên girtin.

Li gor rêxistina piştgiriya penaberan ya Almanî "Pro Asyl" sîstema penaberiyê ya Yûnanistanê tijî binpêkirinên qanûnên nevnetewî ye û ji ber wê jî dilgiraniya Wezîrê Bazirganiyê yê Yûnanistanê Anastassios Papaligouras li ser miriya Arivan jî ne cihê baweriyê ye.

Di van hefteyên borî de hêzên ewlekariyê yên Yûnanistanê bi dijwarî diçin ser penaberan û wan terorîze dikin. Piraniya penaberên ku dighijin Yûnanistanê ji aliyê rayedaran beyî alîkari û xanî tên hiştîn, ji bo ku mecbûrê koça welatekî din bên kirin.

# Aram diçe Amedê



*(Ji Rûpela 1)*

**Dermanê Atînayê lê nehat**

Hevjîna wî Sirvart Tîgran (Diya Agop) jî ji Rûdawê re bahsa nexweşiya Aram wiha vegot: "Aram di Newroza Amedê de nexweş ket. Doktorên Kurd ew emeliyat kirin, sê mehan derman danê. Bi saya van dermanan rewşa wî herdiçû baş dibû. Rojê du car ji mal derdiket û diçu derve digeriya. Piştî ku derman qediya doktorekî li Atinayê dermanekî din dayê, lê belê ew lê nehat. Mamoste dixwest dermanê ku ji Amedê bixwe re anîbû, bikarbîne. Lê doktorê Atinayê destûr neda. Ev dermanê nû xwîna Mamoste tenik kir û bû sedemê mirina wî."

Kurê wî Agop di derbarê nexweşîna bavê xwe de ji Rûdawê re wiha axifî: "Çend roj berê rewşa bavê min gelekî baş bû. Roja pêncşemê li malê ji nîşkeve tendurustiya wî xirab dibe. Sibehê zû dayika min bi rewşa wî dihese û bi alikariya cîranên Kurd wî radikin nexweşxanê."

**Aram li xaka Amedê vedişêrin**

Sirvart Tîgran got wê li ser wesiyeta Aram, cenazeyê wî li Amedê veşêrin. Sirvart got, dostê Aram, Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan jî ji parezerên xwe xwestiye ku Aram li Amedê veşêrin. Sirvart Tîgran wiha dawî li gotinên anî: "Aram 55 sal ji bo Kurdan stran û kilam gotin. Kurd çawa dixwazin bila wiha bikin. Ez û xwişka Mamoste emê bi cenaze re herin Amedê. Ez jî dixwazim êdî li Amedê li gel Aram û Kurdan bijîm."

**Aramgeha dawîn: Goristana Ermeniyan**

Li aliyê din li Amedê amadekariyên definkirina Aram Tîgran destpêkirin. Midura Çandê ya Şaredariya Bajarê Mezin Cevahîr Sadak ji bo amadekariyên merasima cenazê çû Yûnanistanê. DTP ji bo definkirina Aram bi serokatiya Hatip Dicle komîsyonekî avakirin. Komîsyon wê organizasyona definkirinê ya li Goristana Ermeniyan bike. Goristan Ermeniyan li Deriyê Rihayê ye.

Serokê Rêxistina DTP'ê ya Amedê Fırat Anlı got, eger astengiyên hiqûqî dernekevin, ewê bi merasimeke ku bi dehan hezar kes tevlî bibin, Aram definbikin.

## "Hostayê cumbuşa zêrîn"





Hunermendên Kurd yên ku heval û dostên Aramê Tîgran bûn û ew wek "mamoste" binavdikin, hestên xwe ji Rûdawê re anîn ziman:

**Seyîdxan:** Gelê Kurd der- yaya stranan, hostayê cumbuşa zêrîn, mamosteyê hêja Aram Tîgran windakir. Sembola biratiya gelan, kedkarê çand û hunerê, hunermendê bê hempa wê di dîroka gelê me de her bijî. Ji gelek nifşên beriya min û heta niha, Mamoste Aram kaniya strana ku nifşan jê vexwarine bû. Ji bo min jî heman şans e, ku 20 sal in li kêlaka hosta xizmeta çand û hunera gelê xwe dikim. Di sala 1989'an de pêrgî wî hatim. Min di gelek şahî, rojên Kurdan yên taybet de, di amadekirina gelek CD an jî konseran bi wî re kar kir.

**Gani Nar:** Ez gelekî xemgîn im. Hunermendên wek wî zêde nayên dinyayê. Mirin gelek bêbext e, mirovên wiha ji nava me digire û dibe. Bi xwe Ermenî bû, lê wek Kurdekî jiya, wek Kurdekî 55 sal stirand. Ji bo albuma wî ya 'Ez heliyam' min gelek alikarî kir. Ez wî ji xwe re wek mamoste dibînim. Min gelek sûd jê girtiye û hertim stranên wî distirim. Strana 'Leyla,' ku di albuma min de heye, strana Mamoste Aram e.

**Beser Şahin:** Ez xwe gelek bi şans dibînim, ku min bi mamoste re gelek caran stran gotine. Nêzikî 20 sal in ez wî nasdikim û ji xwe re wek îdol dibînim. Di albuma wî ya 'Ey Welat' de min wek vokalîst cihgirtibû. Ez li ku û kengî bistirêm miheqeq min yek, du stranên wî gotiye û navê wî bibîraniye. Di albûma min a nû, ku wê di demekî nêzik de derdikeve, du stranên wî hene. Niha wisa xemgîn im ku nikarim tu gotineke din bînim ziman. Yek ji stûna bingehîn ya çanda me bû. Rihekî bingehîn e. Ji bo hunera Kurdan kedekî gelek mezin daye.

**Xelîl Xemgîn:** Ez nizanim çi bêjim. Windakirina Mamoste Aram, wê ji bo hunera gelê Kurd bibe valahiyeke gelek mezin. Ji sala 1989'an û vir ve min gelek caran pê re karê hunerê kiriye. Herwiha têkiliya me ya dostanî jî hebû. Ez nikarim bijmêrim ku me bi hevre çiqas stran gotine û çend konser dane.

# 'Di xwenên şevan de jî min bawer nedikir ku Diyarbekirê bibînim'

**Ertûş Bozkurt**

**Atina (Diha) -** Hunermendê Ermenî, dostê Kurdan, xwediyê stranên klasîk, nîvekarê derd, kul û êşên gelê Kurd, Aram Tîgran xatir ji jiyanê xwe xwest. Piraniya jiyana wî li penaberiyê derbas bû. Tîgran bi dengê xwe yê zîz, melûl û xemdar bi salan êş û derdên gelê Kurd anî ziman. Hunermendê mezin bi stranên xwe yên bêhempa di navbera gelên Ermenî û Kurd de bû sembola biratiyê ya herî mezin û nemir. Bi kesayetiya xwe ya cansivik, rûyê xwe yê nerm û awazê xwe yê xemgîn her tim ji hestên gelên Kurd û Ermenî re bû newayek bêdawî. Li Atînayê demeke kin beriya koçkirina wî, me pirsî, wî bersivand.

***Em bi pirsa klasîk a 'Mamoste Tîgran kîye?' dest bi hevpeyvîna xwe nakin. Serpêhatiya Mamoste Tîgran çawa ye?***

Ez di 1934'an de li bajarê Qamişloyê ji dayîk bûme. Di 18 saliya xwe de dema min dibistan qedand, bavê min rojekê gazî min kir û got 'Hin gotinên min ji te re hene. Dixwazim êdî tu bi hunerê re eleqedar bibî. Çû ji min re ûdek kirî, anî û ez danîm ber destê mamosteyekî. Heta 6 mehan ez hinekê pêşde çûm. Dema emrê min bû 20 salî, ez baş pêş ketim. Me bi 3 zimanan (kurdî, erebî, ermenî) distirand. Heta em çend salan çûn gelek dawet û şahiyan jî. Heta deriyê Ermeniya li me vebû, dom kir. Di 1966'an de gelek Ermenî ji welatên din birin Ermenîstanê. Ji ber ku nifûsa welat pir kêm bû. Li wir jî her yekê hûnera wî pirs dikirin. Min şandin radyoyekê û min xebata xwe li wir domand.

***Mamoste we pêşî bi ûdê dest bi hunerê kiriye, lê hûn bi cimbûşê tên nasîn. Çima cimbûş?***

Dema min dest bi ûdê kir, hingê wek niha cîhaz, teknîk tunebû. Me zora xwe dida ser dengê xwe. Me zor dida ûdê lê dengê wê nizm e. Carek ez çûbûm dawetekê, min dît ku ji Amedê komek anîne. Li wir çavê min bi cumbuşê ket. Dengê wê pir bilind û lezîz bû. Min pir meraq kir û lê nêrî. Min dît ku têlên wê û yên ûdê heman in. Yek jî bilindbûna dengê wê bandorek mezin li ser min kir. Min biryar da, ku ez ji xwe re cumbuşekê peyda bikim. Piştre min ji Tirkiyeyê yek anî û dest bi cumbuşê kir.

***Kurdiyeke we ya pir zelal heye. Hemû kes ji stranên we tama kurdî digire. Sedemê vê yekê çiye?***

Sedemê vê yekê ew e ku bavê min û diya min bi kurdî diaxifîn. Her tim di malê de zimanê wan ê sereke kurdî bû. Tu caran min nedît ku bi ermenî axivîn. Yek jî zimanê kurdî pir xweş diaxifîn. Ez kurdî ji wan hîn bûm. Bavê min helbstvan bû. Ji bo min helbest dinivîsandin. Stranên Bilbilo, Diçim Diçim, Bi Hestera Yerîvanê ji min re nivîsandin. Gelek stranên din jî wî ji min re nivîsandin. Cîranên me Kurd bûn. Bi zarokên wan re em mezin bûn û me heman çand parve dikir. Dema min tiştên nû dibihîstin min dixwest ez baş fam bikim. Mastfiroşê me hebû ez gelek tiştan ji wan re deyndar im. Eger tama kurdî ji gotinên stranên min bê girtin, ku ev ji bo min cihê keyfxweşiyek mezin e, ez vê yekê ji bo çanda ez di nav de mezin bûme, deyndar im.

***Di stranên we de bilbil her tim li pêş e, sedema vê çiye?***

Di kilamên min de bilbil li pêş e. Meseleya bilbil û ya Kurd, Ermen, Suryanî û gelê din yên bindest yek e. Bilbil ji bo min her tim bi hesreta welatê xwe dixwîne. Ev gelên Rojhilata Navîn yên qedîm jî, her tim li ser axa xwe penaber, xerîb û sirgûn bûne. Bilbil hêlîna wî xirab bûye. Hêlîna wî tune ye. Em jî wekî bilbil bê hêlîn bûn. Bavê min jî dema yekem car ev stran ji min re çêkir, bi vê serpêhatiyê helbest da min. Ev stran jî kete ser devê gel. Ji ber ku gel jî heman hestên min bi vê stranê hîs kirîn, jê hez kirin. Ji ber vê yekê xwe di stranê de dîtin. Di warê wateyê de jî rewşa gelên penaber û xerîb tîne ziman.



***Demek dirêj e hûn li xerîbiyê ne, di stranên we de jî ev xwe dide der. Ev yek bandorek çawa li ser hunera we dike?***

Beşek jiyana min li xerîbiyê derbas bû. Vê yekê bandorek baş li ser hunera min kir. Herwiha bandorên cuda jî li ser hunerê dike. Lê ji bo min salên xerîbiyê yên herî zêde bi feyde, salên li Ermenîstanê bûn. Li Ermenîstan hingê di warê çandî û zanistî de pêşketinek baş hebû. Min hunera xwe di radyoya Êrîvanê de pir pêş xist. Dengbêj, sazkar, noter û lêxistok pir bûn. Qelîtekî bilind hebû. Min ji wan aqil girt, huner hînbûm û ez pêşde çûm. Li cihên din jî xerîbiyê li ser jiyana min bandorên erênî û neyînî kirin, lê tişta esas keda mirov e.

***Di çanda gelên Ermenî û Kurd de kevneşopiya dengbêjî û asûgê heye?***

Gelên Kurd û Ermenî di dîrokê de heta niha bi hev re mane. Çanda wan gelek hevgirî li hev kiriye û gelek tişt ji hev girtine. Ji ber ku asûg û dengbêjî di çanda van gelan de du hêmanên bingehîn in, faydeyek mezin daye min. Ez dikarim bêjim dema ez stranên Ermenî jî dibêjim, ez gelek caran ji maqamên kurdî derdixim. Gava klamên kurdî çê dikim, ez ji maqamên ermenî derdixim. Ez di bingehê de li dijî vê yekê me. Lê min di vê jiyana xwe de dît ku çanda ermenî û kurdî bi ruhî bûne yek. Ji kokê derdikevin. Ev yek bandorek gelek baş li ser hunera min dike. Kurd jî Ermenî jî ji heman stranê hez dikin. Ev yek jî nasîna çandan, nêzîkbûna çandan nîşan dide. Lê van çandan qet hev asîmîle nekirine. Ev jî cihê keyfxweşiyê ye.

***Wateya Amedê ji bo Kurdan tê zanîn. Dema hûn herin Amedê, we çi hîs kir?***

Ez beriya herim Amedê min xelatek ji bo Amedê çê kir. Cuyina min a Amedê ji bo min xwenek e. Min gelê Kurd ê qedîm careke din li vir dît. Hestên min bi gotinan nayên ziman. Ez dixwazim bi strana ku min ji bo diyariya Amedê çêkiriye bi çend çarînan hestên xwe bînim ziman. Min ev yek di konsera Newrozê de got: "Di nav xwenên şevan de min qet bawer nedikir ez bajarê Diyarbekir bibînim. Roj baş Diyarbekir, me te jibîr nekir, em hatin te bibînin te derî li me vekir."

***Rexneyekî wek 'Kurd ji hunermendên xwe hez dikin, lê xwedî li wan dernakevin' heye. Ev yek di dema Garabêtê Xaço çû ser dilovaniya xwe jî hat gotin. Hûn di vê baweriyê de ne?***

Garabêtê Xaço dengekî xweş bû. Gelê Kurd ji hunermendên xwe hez dike. Gelek nirxek mezin jî dide wan. Gelê Kurd keda kesekî ji bîr nake. Keda ku min ji bo çanda Kurd da, wê Kurd jibîr nekin. Min ev yek ji bo biratiya gelên Kurd û Ermenî kir. Gelê Kurd jî vê yekê wêkî kedkariya çanda Kurd dibîne û ev yek pederek mezin dide min.

# "Silav li guhdarên min"

**Firaz Baran**

**Köln (Rûdaw) -** "Ji malbata me kes nema. Hin kes telefone vedikin. Ji Amedê jî telefon dikin. Dibêjin 'em mirovê hevin' lê derfet çênebû em hev bibînin. Delîl jî tunene. Min ew nedîne. Bavê min jî tuneye ku wan nas bike".

Tîgran got ku malbata wî ji gundê Sasonê Bîanda ye. Ev gund di sala 1915'an, di fermana Ermeniyan de darbeyek mezin dixwe û tenê 15-20 kes ji gund xelas dibin. Yek ji van jî bavê Tîgran e. Bavê wî direvê Qamişlo. Malbata dayîka Aram jî heman aqubete dijîn. Ji alîye dayîka wî, tenê dayîka wî û xaltiya wî dighêjin Qamişlo. Yên din, hew kesek carekî din dîbîne. Tîgran dibêje: "Tenê dayîka min û xaltiya min gihiştin Qamişlo. Niha xaltiya min jî miriye. Pir zehmete ku mirov nasên xwe yên berê bibîne".

Dê û bavê Aram Tîgran li Qamişlo hev nas dikin û dizewicin. Di 15'ê çileya 1934'an Aram ji dayîk dibe. Piştî 15 saliya xwe, bi cumbuşe şahiyan pêk tîne, tim distrê, di sohbeten araqê de li xwe dike sibeh. Li Sasone rewşa aborî ya malbata wî ne baş bû.



Bavê wî jî li Qamişlo karkere înşeatê bû. Aram jî ti carî li dewlemendiye nafikire. Derdê wî tenê jiyaneke xweş û bi şahî ye. Jixwe dema li cumbuşe dide, derdora wî qelebalix dibe û kêfe dikin.

Di sala 1953'an de bi awayekî profesyonel dest bi hunere dike. Di navbera salên 1953-1996'an de hunera xwe pêk tîne. Di van salan de, li gel Kurden Rojava dibe yek ji hunermendên herî navdar.

Di sala 1966'an de li Erîvanê bi cîh dibe û navbera salên 1966-1985'an li radyoya Erîvanê dixebite. Vê carê ne di nav civaka dost û heyranan de distrê, ji radyoyê re stranan dibêje. Lê di salên ku li radyoyê dixebitê de, navê wî li beşên din yê Kurdistanê jî belav dibe. Aram Tîgran di sala 1990'î de tê Ewrûpayê. 19 salên jiyana xwe li vir didomîne. Aram 50 salin zewiciye, 2 keç û kurekî wî hene. Aramê ku her 3 zaroyên xwe zewicinadine, herweha kalike. Tîgranê ku tim di nav mirovên bê nasname û xerîb hatine binavkirin de jiyaye, di warê aborî de dewlemend nebûye. Lê belê bû xwedî kariyereke muzîke, ku nabe para her hunermendî û di nav Kurdan de bû yek ji hunermendên herî navdar û hêja.

**"Ji muzîkê têr nebûm"**

Aram Tîgran di 56 salên jiyana xwe ya muzîkî de 435 stranên bi zimanê ermenî, kurdî, erebî û tirkî dixwene. Bi gotina wî, ji van 230 bi kurmancî, 150 bi erebî, 30 bi tirkî, 10 bi suryanî, 8 bi yewnanî û 7 jî bi zazakî ne. Lê belê Aram Tîgran hemû stranên xwe di albûman de ne gotine. Di demên borî de derfetên albûman tunebûn. Wek mînak Mihemed Mamlê jî albûm dernexistibûn, lê 650 stran qeyd kiribûn. Di salên derbasbûyî de Husen Reber ji wan stranan 21 CD derxistin.

Di piraniya kasetên Aram Tîgran de xwediyê gotin û muzîka stranan nedinivîsand. Hunermendê mezin dema xwe ya pir giranbuha wext veqetand û me yek bi yek xwediyê stranan nivîsand. Di encama vê xebata nêzî 3 seatan de me xwediye 148 stranan qeyd kir. Bavê Aram Tîgran jî hunermend bû. Hunermend hin stranên ku bavê wî çêkirine jî di albûmên xwe de gotine. Wek Çil Kezî, Hay Dil Dilo, Şeva Tarî, Bilbilo, Ay Dil û Elekya Zer, Sebra Dilan û Lêv Şêrîna Min... Dîsa jî hin stranên ku bavê wî nivîsandine û wî jî awaza wan çêkiriye hene. Ji van re jî em dikarin "Gulgulî Ha Gulgulî" û "Meqamê Govendê" wek mînak nîşan bidin.

Dema me ji Aram Tîgran ev pirs kir: "Hûn gelekî hatin naskirin. Kêmasiyeke ku hûn hîs dikin heye?" vê bersivê dide: "Çavê min ji hunerê têr nebû. Ji stran û muzîke têr nebû. Wê kengî têr bibe nizanim. Bawer dikim, ji ber ku ez ji hunere hez dikim. Ji bo min hingive, jiyane, vîtamîn e. Wekî din, dema em ciwan bûn, derdora me tîje dibû. Em heta sibehê ji rûniştiba, têr nedibûn. Me pir vedixwar. Tercîha min wiskî bû. Hîn jî jê hez dikim. Ew rojên bi şahî ji bîra min naçin. Silavan li guhdarên xwe dikim. Ji hemûyan re, di jiyana wan de, serkeftin û dilşadiyê dixwazim."

# Jin li dijî tundûtûjiyê xwe dispêrên yasayan

**Hewlêr (Rûdaw)** - Fatîme Xidir a 35 salî pir caran ji mêrê lêdan xwariye. Cara dawîn mêrê wê bi kêrê êrîş biriye ser û bi çar cihan ew birîndar kiriye. Fatîme li ser vê yekê li gel polîs doz li dijî mêrê xwe vekiriye. Navbirî bînçikyayî û bi dengekî nizim diaxife û sedemê doza xwe aşkere dikir: ”Dixwazim di rêya dadgehê de mafê xwe ji mêrê xwe bistînim.”

Bi vekirina Birêveberiya Lidûvçûna Tundûtûjiya Dijî Jinan, jin êdî li hember zordarî û lêdana mêran bêdeng namînin. Ew êdî dikarin xwe biavêjin bextê wê birêveberiyê. Li gor berpirsên birêveberiyê jî hejmara jinên gilîkar berbi zêdebûnê ye.

Li gor serjimêriya Birêveberiya Lidûvçûna Tundûtûjiya Dijî Jinan, di çar mehên destpêka îsal de li Kurdistanê ji aliyê jinan ve 1014 doz hatine vekirin. Ev hejmar li Hewlêrê 415, li Silêmanî 477 û li Dihokê 122 ye. Lê di çar mehên destpêka sala borî de bi tenê 522 doz hatin tomarkirin. Ev jî li Hewlêr 195, li Silêmanî 276, li Dihok 51 buye.

Li gor Endamê Sekreteriya Yekîtiya Jinên Kurdistanê Seywan Rostem, vekirina dozan ji aliyê jinan tê wateya hişyariya wan. Seywan dibêje doz vekirin bandoreke mezin li ser guherîna jiyana jinan dike: ”Jin dikare di rêya şikayetnamê de li dijî tundûtûjiyê derkeve. Lê belê divê jin bo berevaniya xwe şikayetnameyan tomar bikin, lê ne ji bo herifandina malbatê.”

Rêveberê Birêveberiya Lidûvçûna Tundûtûjiya dijî Jinan li Hewlêrê Neqîb Jîlemo Evdilqadir, doznameyên çend jinan di dest de, dide zanîn ku vekirina dozan ji aliyê jinan ve roj bi roj zêdetir dibe û piraniya jinên şikayetkar di navbera 16-30 salan de ne: ”Her roj em hewldidin bi xwe kêşeyan çareser bikin, beriya ku bigîjin ber dadgehê.”

Li gor axaftinên Neqîb Jîlemo, jin piraniya dozan li dijî mêrên xwe vedikin. Hinek jî li dijî kur, bira an jî bavê xwe xwe dispêrên yasayan: ”Jin dibêjin li me dixin, êrîşî me dikin, yan bi mêrên xwe re lihev nakin.”

Lê belê heta niha gelek jin jî li hember tundûtûjiyê şikayet nakin. Li gor wan gilîkirin gelek şerm e.

Li gor Xelat Evdilla ya 43 salî pir şerm e, ku jin dozê li dijî mirovên xwe vekin. Xelat dibêje jinên niha pirsgirêkên nav malê gelekî mezin dikin û pêwîst e jin li gel acizbûna mêran xwe bigirin: ”Ger min wekî jinên niha bikira, ezê beriya 20 salan hatibûma berdan. Lê ger mêrekî her li ser xirabiya xwe berdewam kir, bila jin bêdeng nemîne û daxwaza mafên xwe bike.”

Jêderekî ji polîsên bingeha Îskan li Hewlêr bahsa keçekê kir ku beriya çend rojan şikayetnameyekî li dijî bavê xwe tomarkiriye. Keçikê di îfadeya xwe de gotiye ku bavê wê bi berdewamî lêdide: ”Pir tiştên din jî li ser bavê xwe gotin. Lê piştî anîna bavê wê derket ku keçikê rast nedigot û dixwest di rêya mobilê de pêwendiyan di gel xortan re çê bike, lê bavê wê nedihişt.”




Li aliyê din heta niha gelek keç û jinên ku xwe dişewitînin yan hewldidin xwe bikujin, beriya ku bimirin şikayetname tomar kirine. Lê belê piştî mirina wan xizm û mirovên wan dikarin biryar bidin, ku şikayetên wan paş - ve bigrin.

Neqîb Jîlemo bi pêwîst dibîne ku ji dêvla jin xwe bişewitînin, bila dozê vekin û mafên xwe bistînin: ”Pir zehmet e ku were îsbatkirin, ka kî buye sedemê xweşewitandinê.”

Jinên ku dozan vedikin, ji aliyê xizm xwe ve bi çavekî sivik tên temaşekirin. Dozvekirin carna li ser jiyana wan dibe metirsî jî. Lê Seywan dibêje ger jineke mazlûm dengê xwe neke, wê zilma ser wê zêdetir bibe.

Li aliyê din hinek jin ji lêpirsîna polîs jî gumankarin. Lê belê Neqîb Jîlemo dibêje ew lêpirsîna hemî dozan dikin: ”Ger li jinekê zilm bê kirin û dozê li dijî mêrê xwe veke û ger jin daxwaza cudabûnê jî bike, divê ew bigihîjin mafê xwe.”

Li gor Civaknas Evîn Ibrahîm Fetah jin bo wergirtina mafên xwe divê yasayan bikar bînin: ”Eger keçek bi zorê bê zewicandin, jiyana wê namîne, vêce bila rê nede vê yekê û gilî bike.”



*Şîrîn Cîhanî (Wêne: Rûdaw)*

Derhêner Şîrîn Cîhanî:

# Jinên Kurd dûrî aktoriyê dimînin

**Hewlêr (Rûdaw)** – Şîrîn Cîhanî, derhênereka sînemayê ye. Ew ji Rojhilatê Kurdistanê ye û ji 14 saliya xwe ve bûye endamê Yekîtiya Nûserên Bajarê Mehabadê. Bi reya nûsîn û xwendina çîrokan kêfa wê ji sînemayê re hatiye. Di dema dibistanê de çûye sînemayê û cara yekem li ser ekraneke mezin fîlmekî Farisî dîtiye. Hingê gelekî ecêbmayî bûye: “Ew roj qet ji bîra min naçe. Ji kêfa, me hemuyan li çepikan dixist, ewqasî em ketibûn nava fîlm.”

Cîhanî di sala 1980’an de li bajarê Mehabadê jidayikbûye. Li Zanîngeha Mehabadê Beşa Ziman û Edebiyatê qedandiye. Piştre beşdarî dewreyên sînemayê bûye. Piştî derhênana çendîn fîlmên kirt û dokumenteran di sala 2004’an de bi mebesta montajkirina fîlmekî dokumenterî ji bo kanala Kurdistan Tv, berê xwe dide Başûrê Kurdistanê û piştî salekê bi yekcarî li Başûrê Kurdistanê bicîh dibe: “Herçiqas li Îranê, bi taybetî di warê teknîkî de derfet baştir bû, lê sazkirina fîlmekî sînemayî li Kurdistanê ji bo min baştir bû.”

Di hevpeyvînekê li odeya xwe ya Korek Tv li Pîrmamê, Şîrîn Cîhanî ji bo Rûdawê ragihand ku sîstema fîlm û fîlmsaziyê li Îranê pir cûda ye û pêwîst e senaryo di çend fîltreyan re derbas bibe: “Li hemû bajarên Îranê bi navê Îrşad a Îslamî beşekî heye û ji bo çêkirina fîlman butçeya wê ya salane heye. Lê ji wê butçeyê kêmtirîn pişk dikeve para bajarên Kurdistanê. Herwiha bi nerîneke azad li Îranê karkirina sînema dijwar e.”

Li Îranê, zêdetir fîlmên Kurd û yên alternatîf bi sedemên dînî tên qedexekirin. Jiber nikarin ji wî sînorê ku ji wan re hatiye danîn derkevin: “Dibêjin li ser evîndariya keç û kurekî yan pirsgirêka navbera dû malbatan de fîlmekî çêke. Lê tu nikarî rexneyekî bikî. Ji sedema rexneyekî biçûk jî fîlm tê ragirtin û nayê pêşandan. Li wir çarçove heye, lê li vir ji bo karkirinê azadiyeke zêdetir heye.”

Cîhanî niha li Korek Tv berpirsa beşa plan û bernameyan e. Herwiha di warê fîlmsazî de xebatên xwe berdewam dike. Cîhanî bibîr dixe ku ji ber nebûna amêr û teknîka sînemayê li başûr sînemevan neçarin ekîban ji derve bînin: “Aktor ne profesyonel in, gelek caran min bi xwe kar kiriye.”



*(Wêne: Rûdaw)*

Ji aliyekî din ve derhênera Kurd bahsa nebûna salonên pêşandana fîlman û lewaziya kultura dîtina fîlman li Kurdistanê dike û didomîne: “Li hinek welatan ji bo temaşekirina fîlm û wext derbaskirinê demeke taybet heye. Li ba me jî bo çûna super marketan dema taybet hatiye terxankirin.”

Di warê hunerê de, bi taybetî di sînemayê de karkirin, ji bo jinê zehmet e. Lê Cîhanî wê kêf û hêza xwe ya li ser sînemayê venaşêre: “Ez dikarim bi reya sînemayê hinek tiştan bighînim, ez li serê rê me. Di filmê yekem de qeçaxçiyan sixêf li me kirin, lê vêyekê dilê min sar nekir.”

Cîhanî fîlmê yekem ê dirêj bi navê ‘Stêrk Bi Roj Bê Reng in’ di sala 2007’an de kişandiye. Ev fîlm tevlî çend festîvalan bûye û Xelata Calabria li Îtalya standiye. Cîhanî niha bi fîlmekî din bi navê ‘Firîn Ber Bi Xweliyê’ ve mijul e. Film li ser kuştin û tundûtûjiya beramberê jinan e. Lê dibe ku nav were guhertin. Çîroka fîlm ji rojhilatê Kurdistanê destpêdike û ber bi bakur û başûr ve diçe. Dibe ku li rojava bi dawî bibe. Cîhanî senaryo bixwe nivîsiye û mijar ji rastiya civaka Kurdî hatiye wergirtin.

Tiştê ku Şîrîn Cîhanî dilgiran dike, nebûna lîstikvanên jin e: “Ez neçar bûm di filmê xwe yê berê de jinên Ereb bidim lîstandin. Ji ber ku jinên Kurd bi sedema hinek beşên fîlm, razî nebûn. Ew ji aktoriyê direvin.”

# Jinên Colemergê fûtbolê dilîzin



*(Wêne: Hamdiye Çiftçi)*

**Colemêrg (Dîha)** - Li Colemêrgê tîma fûtbolê ya jinan hat avakirin. Tîma jinan ku di bin banê midûriyata bajêr a werzîş û ciwanan de xebatên profesyonel dimeşîne, li benda piştgiriyê ye.

Tîma fûtbolê ya jinan di sala 2008’an de bi komekî ji 18 jinan ava bûye. Ev tîm li Kurdistanê yekem tîma fûtbolê ya jinan e. Tîma jinan ku ji bo profesyoneliyê xebatên xwe dimeşîne ji gelê Colemêrgê piştgiriyê dixwaze. Antrenorê Tîma Fûtbolê ya Jinan Cemîle Tîmûr dibêje ew bi hewldaneke mezin xebatên werzîşê dikin û gihiştine astekî bilind. Tîmûr diyar kir ku ew li herêmê yekem û yeksane tîma jin ya gogê ne: ”Em bi vîn û hêza xwe bawer bûn û em ketin rê. Ji bo serkeftinê çi ji destê me bê emê bikin. Di destpêkê de avakirina vê tîmê wek xewn bû. Lê belê niha em gihiştine astekî baş û ji bo serkeftinê çi ji destê me tê emê bikin.

**‘Bila feodalîyê bişkînin û dest bi xebatê bikin’**

Lîstikvana tîma jinan Fadîle Ölmez jî destnîşan kir ku ji ber ew di tîma jinan de cih digire, ew gelekî kefxweşe: ”Li bajarekî ku pergala feodal serdest e, wek jinekê ez dibêjim bila baweriya jinê bi wê bê û xwedî biryar be. Ger ku bawerî û biryar hebe serkeftin jî heye. Divê ev dîwarê pergala feodal bên şikandin. Dema jin bixwazin, dikarin bi ser her zoriyê de biçin û zordarî û astengiyên li ser xwe têk bibin. Min xwest ew baweriya ku dibêje ‘jin nikarin bi gogê bilîzin’ bişkînim. Li dêlva ku em bi pey kevneşopiyên şaş bikevin, divê em li hember şaşiyan di nav civakê de cihê xwe bigrin. Gog, lîstikeke pir xweş e. Bi taybetî jin rengekî cûda dixin nav lîstikê. Ez dixwazin herkes beşdarî vê lîstikê bibe.”

Ölmez ku ji gelê Colemêrgê piştgirî xwest anî ziman ku gelek jin dixwazin beşdarî xebata tîma wan bibin.

# Rejima Sûriye jinên Kurd jî digre

**Şam (Rûdaw)** – Li Sûriyeyê girtina Kurdan berdewam dike. Vê carê jî dû jinên Kurd hatine girtin. Roja 3’ê tebaxa li Şamê li Taxa Zorava di saet yekê nîvro de hêzên ewlekariya siyasî girtin ser maleke Kurd û du çalakvanên jin girtin. Jineke ji wan Feleknaz Xelîl ya 41 salî, ji Eyndîwera Dêrikê ye. Nexweşiya dil pêre heye. Ya din Efra Mûsa Mihemed ya 34 salî, ji Hesekê ye. Ji lingê xwe ve nexweş e.



*Efra Mûsa Mihemed* *Feleknaz Xelîl*

Komîteya Mafê mirovan li Sûriyê MAD’ê girtina herdû jinên Kurd protesto kir. MAD’ê bal kişand ser nexweşiya jinên girtî û diyarkir, ku ew ji bo dermankirina nexweşiyên xwe çûbûn Şamê. MAD’ê herweha doz li desthilatdarên rejîma Sûriyê jî kir ku dev ji van girtinan berde û herdû jinên Kurd serbest bêne berdan.

Tê îdiakirin ku herdû jin çalakvanên Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) bin. Hêjayî gotinê ye ku ev zêdeyî çil salî ye, ku li Sûriyê rewşa awarte lidar e û dadgehên awarte jî li ser karin.

Ji hêleke din ve rêxistina PYD’ê ya Ewrûpayê ji bo şermezarkirina girtina endam û piştgirên xwe xwepêşandanên girseyî lidardixe. PYD’ê di dawiya meha borî de li Holandayê, li bajarê Den Haagê, li pêşiya avahiya Dadgeha Dadmendiya Navneteweyî xwepêşandanek lidarxistibû û zordestiya li ser gelê Kurd li rojavayê Kurdistanê şermezar kiribû.